

## Messiyê Kurd di rêya Barcelona de ye

Ciwanekî kurd ê 14 salî diçe Barcelona

▶Rûpel 8

7

دەڵێ ئەلکحوول کوشتوومی

## ڕۆستەم لەبەردەم دووڕیاندایە



Hejmar / Nr. 107
04 Tebax / August 2011

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

## "Ne qebûlbar e!"

**Koln (Rûdaw) -** Bi daxuyaniyek hevpav, 9 parlementerên alman yên ser bi Partiya Çep (Die Linke) û çendîn akademisyenên alman êrişên dewleta Îranê yên ser axa Herêma Kurdistanê bi tundî şermezar kirin û bangî hikûmeta Almanya û rayedarên Yekîtiya Ewropayê kirin ku ji bo bidawîanîna van binpêkirinan bandora xwe ya li ser aktorên herêmê bikar bînin. Parlementer Harald Weinberg wiha dibeje: "Derbaskirina sînor ya dijqanûna navnetewî ji aliyê artêşa Îranê ne qebûlbar e. Em bangî hikûmeta federal ya Almanyayê û Yekîtiya Ewropayê dikin ku hemû rêyan bikar bînin, dakû rijandina xwînê ya bêwate bê rawestandin" Ulla Jelpke jî siyaseta Dewletên Yekgirtî yên Amerîkayê rexne dike ku ew "bi agahiyên sîxurî derbarên şervanên kurd de piştgiriyê dide hevgirtina şerî di navbere Îran û Tirkiyeyê de".

**Parlementerên ku daxuyanî destnîşan kirine:** Andrej Hunko, Heidrun Dittrich, Ulla Jelpke, Ingrid Remmers, Harald Weinberg, Ali Atalan, Barbara Cárdenas, Cansu Özdemir, Bärbel Beuermann. Wekî din: Prof. Dr. Werner Ruf (Lêkolerê aşîtiyê, Kassel), Dr. Peter Strutynski (Berdevkê Lîjneya Aşîtiyê ya Federal), Martin Dolzer (Sosyolog) und Murat Cakir (Weqfa Rosa Luxemburg).



### Masîgir (Îlhamî Işik) ji Rûdawê re axivî:

# Danûstandinên ligel Ocalan ne ji bo jinavbirinê ne

2 »

Wêne: Rûdaw



## Banû bi ala Kurdistanê hate binaxkirin

Bi meşeke sembolîk û weke peyama bihevrejiyanê, keşeya norwêcî Anne Mari Tronvik (çep) û Îmam Senaid Kubilica (rast) dane pêşiya karwanê dost û xizmên keça Kurd Banûya 18 salî ku berbi meşa xwe ya dawî tê hilgirtin. Banû Reşîd yek ji 68 qurbaniyên komkujiya 22.07.2011 di kampa ciwanen Partiya Karkerên Norwêcê li Girava Utöya li Norwêcê ye û weke qurbaniya yekemîn ji aliyê bi sedan kesan ve roja înê (29.07.2011) li gundê Nesodden yê li başûrê paytext Osloyê hate binaxkirin. Bêtirî 300 kes beşdarî merasima binaxkirina Banûyê bûn, Wezîrê Derve yê Norwêcê Jonas Gahr Stoere jî yek ji wan kesan bû. Merasima binaxkirina Banuyê di çapemeniya ewropî de jî dengekî mezin veda. Banû tevlî malbata xwe sala 1996ê weke penaber ji Başûrê Kurdistanê hatibûn Norwêcê û xewna Banûyê ew bû ku rojekê hiqûqê bixwînê û bibe parlementer.







Great Britain

Mahmut Kilinç

## Her kêşe taybetiyên wê hene



Carinan, li Tirkiyeyê, taybetî kes û saziyên demokrasîxwaz bi mebesta çareserkirina kêşeya Bakurê Kurdistanê, ji kêşeyên li dewletên din mînak didin. Piranî jî kêşeya Başûrê Afrika, Bakurê Îrlanda, li Spanya Bask û Katalan û li Kanada Quebec. Balkêş e, Başûrê Kurdistanê naye bîra kesî!

Hefteya borî, bi mebesta ku ezmûna çareserkirina kêşeya Bakurê Îrlanda û Skoçyayê lêbikolin û bi kesên ku di pêvejoya aştiyê de rol standine ve hevdîtinan pêk bînin, grubek ji parlementer, rojnameger û jî nûnerên saziyên sivîl pêk hatî, serdana Îngilistan, Skoçya û Bakurê Îrlandayê kirin.

Bêşik, ji bo çareserkirina kêşeyekê, kêşe her çi dibe bila be, berî hertiştî, li ser hûrgilên wê agahdarî divê. Ango, kêşe bi helwest û dîtinek bêlay (objektif) bê pênas kirin. Mînak, wek her kêşeyê dîrokek kêşeya Bakurê Kurdistanê jî heye, nabe mirov wek kêşeyek ku doh dest pê kiribe bibîne. Nabe êş û keresata ku zordestan aniye serê Kurd neye dîtin.

Helbet hinek hêlên kêşeya Bakurê Kurdistanê jî dişibin yên welatên din, taybetî Skoçya, lê belê wekî mîmarê pêvejoya aştiya Bakurê Îrlanda Tony Blair dibêje; "Helbet, her pevçûn çûdatir e. Her yekê sedemên taybetî yên derketina wê, pêvejoya wê ya dîrokî, bona çareserkirinê çewaniyên wê yên çûda hene. Ji ber vê, ji yekê bona yên din bidestxistina şîretan ne hêsan e, lê belê di dawiyê da min fam kir, bi mebesta ku sepandinek bi giştî bidestkeve, rêgezên girîng (navikê) hene."

Wekî Blair dibêje, layên kêşeyan yên hevpar hebin jî, yên çûda bêtir girîng in û ew bi giştî rengê xwe didin kêşeyê. Sebebên derketina kêşeyê, dîroka wê, rewşa rêxistinên pêşeng, şertên civakî û herêmî ji hev çûda ne. Gelek hêlên çûda yên kêşeya Kurdistanê hene, berî her tiştî miletê Kurd bê vîna wî hatiye parçekirin û welatê wî ketiye bin dagiriya çar dewletan. Di dinyayê da ti mînakên ku di vê hêle ve dişibin kêşeya Kurdistanê tune ye. Herwiha kêşeya Kurdistanê, mîna Başûrê Afrîka ne tenê daxwaza desthilatiya siyasî ye, kêşeyek tretoryal e, ango azadiya erdnîgariya bi navê Kurdistanê ye.

Berî her tiştî ji dilbûn (samimiyet) divê, rojên ku rayagiştî derbarê seredana grubê de agahdar dibe, hikûmeta tirk biryara pêkanîna arteşekî profesyonel û taybetî stend. Dîsa Komara Îslam ya Îranê lez daye êrişên xwe, herweha li Bakurê Kurdistanê operasyonên arteşa tirk nasekinin, her roj ji gerilla û esker çend jiyan wenda dibin. Di nav aloziya siyasiya Tirkiyeyê de peyamên rayedaran yên ku banga têkoşîna li "dijî terorê" dikin jî ji hêza xwe kêm nakin.

Di çareserkirina kêşeyan de tiştê herî girîng, qebûlkirin û biçûknexistina hevudin yên layê pirsigirêkê ye. Kevnebalyoz Sir Kieran Prendergast ji grubê re dibêje; "Eger bi rastî mirov aştiyê dixwaze divê mirov dijminê xwe biçûk nexe, ji bo neqenciyê han nede. Eger mirov wisa neke, ji bo aştî û çareserkirinê kanîkirina rayagiştî pir zehmet e." Mirov dibêje qey Prendergast ew dîtin ji bo Tirkiyeyê vegotiye, rewşa dewlet û siyaseta Tirkiyeyê wisa ye.

Bi awayekî vekirî ji mînakên din jî tê ditîn, ku ji bo çareserkirinê, berî her tiştî, ji dilbûn û diyalog divê.

***Ji vê hejmarê û şûnde, birêz Mahmut Kilinc wê her du hefteyan carekê bi xwendevanên Rûdawê re be. Rûdaw bixêrhatina birêz Kilinc dike û serkeftinê jê re dixwaze.***

"Balikçî" bo Rûdawê:

# Kesên ku bi Ocalan re gotûbêjan dikin girêdayî dezgenên biryarbidest in

» "Ew xetimîna ku ji piştî şerê Farqînê derket holê, zêde dirêj nake "

Wêne: Rûdaw

### Kî ye?

Navê Balikçi (Masîgir) yê rast Îlhamî Işik e. Rewşenbîr û siyasetvanekî kurd ji Batmanê ye. Piştî salên 1980an li Bakurê Kurdistanê berbi Stenbolê koç kiriye. Pêwendiya wî ligel siyasetê vedigere dawiya salên 1970an. Wê demê roleke aktîf di nava komeleyên ciwanan ên ser bi Partiya Komunîst a Tirkiyeyê de dilîst. Tevî ku wê demê bizava PKKê, ku weke Apocî dihatin naskirin, di nava ciwanan de pir bibandor bû, lê Işik qet nebûye alîgirê PKKê, lê rikeberekî tund yê vê partiyê bû û ji aliyê endamên PKKê rastî êrîşekê hat û hewldana kuştina wî hat kirin. Piştî derbasbûna zêdeyî 20 salan di ser van bûyeran re, bi taybetî piştî ku dewleta Tirkiyeyê li Îmraliyê ligel Ocalan dest bi danûstandinê kir, dewlet li Kurdekî digeriya daku bikare bi rêya guftûgoya wî kesî Ocalan razî bike. Di vê pêwendiyê de jî wiha dixuyê ku Işik ev rol lîstiye. Di nav raya giştî de Îlhamî Işik weke Balikçi, yanî Masîgir, tê binavkirin.

Rûdawê bi rêya e-mailê hewl da ku Balikçî bide axaftin, lê navborî bi sedema ku heye bersiva pirsiyaran zererê bigihîne proseya danûstandinan, tenê bersiva çend pirsan bi kurtî dan. Di pêşiya bersivên xwe de dibêje: "Şev baş: Pirsiyarên we gihîştin destê min, lê ji bo parastina girîngiya proseyê û herwiha ji ber çend sedemên mirovî, nikarim bersiva pirsiyarên te yeko yeko bidim." Balikçî herwiha bo cara yekê wêneyekî xwe jî, ku hemû rûyê wî tê de diyar e, ji Rûdawê re şandiye.

**Rûdaw: Ew şanda ku ev du sal in li zindanê danûstandinan ligel Ocalan dikin, girêdayî kîjan dezgeha dewleta Tirkiyeyê ne?**

Balkiçi: Ew grûba ku danûstandinan li Îmraliyê ligel Ocalan dike, ji hinek kesan pêk tên ku di nava dewletê de destdirêj in, nûnertiya piraniya dezgeh û desthilatên xwedî biryar yên dewletê dikin. Bêguman kesên ku danûstandinan ligel Ocalan dikin di nava xwe de jî ligel hevdu gotûbêjan dikin. Dibe ku niyetên wan yên cuda hebin û wê hebin jî. Ev tiştekî zêde normal e, lê tiştê ku divê em tekeziyê li ser bikin, danûstandina ligel Ocalan ne vala û bi armanca derbaskirina demê û jinavbirinê ne. Carnan zimanê diyalogan pir tûnd e û carnan jî bi zimanê nerm û lihevkirinê tên bicihanîn.

**Ji ber çi ji te re dibêjin Balikçi?**

Balikçi (Masîgir), ku bi vî navî gazî min dikin, ji wê yekê hatiye, ku bo cara yekemîn ligel muxatabên xwe li xwaringeheke masiyan me hevdu nas kir û rasterast ligel hev rûniştin.

**Bi raya te bûyera Farqînê wê çi bandorê li gotûbêjan bike?**

Eger em helwêstekê li ser bûyera şerê dawî yê navçeya Farqînê bikin, em ê bigihin wê encamê ku ev bûyer hinek xetimîn aniye holê. Weke bûyera Gulana 1993yê, ku bû sedemê kuştina 33 leşkeran, prose û aktorên di nava proseyê de jî tengav kiriye. Tevlî vê jî, ji ber rola girîng ya Tirkiyeyê ji bo demokratîbûna vê deverê (Rojhilata Navîn), ew erkê girîng ku hêzên navdewletî di vî warî de dispêrin Tirkiyeyê, bi baweriya min, çareseriya demokratîk kareke ku dest jê nayê berdane û ew xetimîna ku kêşe îro bi destê wê dinalîne dirêj nakişîne û hemû tişt vedigerin ser rêçika xwe ya asayî ku berî bûyera Farqînê li ser diçûn.



Rûdaw

Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Sernûser
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

Redaksiyon
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

Dîzayner
Hamdullah Yumlu

Îdare û belavkirin
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

Şêwirmendê yasayî û aborî
Ayhan Çiftçî

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Pêwendî
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

Belavkirin / Vertrieb:
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

**Pispor bo Esad navnîşanek diyar dikin:**

# Dadgeha Tawanên Navdewletî



**Rûdaw –** Federasyona Navdewletî ya Mafên Mirovan û Navenda Şamê ya Mafên Mirovan, Serokkomarê Sûriyê Beşar Esed bi pêkanîna tawanên dijî mirovatiyê tawanbar kir. Di raporeke hevbeş de derbarê şîdetan li Sûriyê tê gotin: “Esed tawanbarê dijî mirovatiyê ye.”

Di vê raporê de ku 7 rêxistinên Sûriyê yên parastina mafên mirovan jî tê de beşdarî bûne, behsa wê yekê hatiye kirin ku “Di bin ronahiya bikaranîna xerab ya hêzê û serkutkirina zêde ya desthilatdariya rêjîma Sûriyê ji 15ê Adara borî ve, wisa tê danîn ku hinek tawanên dijî mirovatiyê ji aliyê desthilatdarên Sûriyê hatine pêkanîn, ev tawan diçin xaneya wan tawanên ku Dadgeha Tawanên Navdewletî li wan dikole.” Rapor rexne li desthilatdarên Sûriyê digire, ku rê venakin li ber saziyên mafên mirovan û rojnamevanan û saziyên girêdayî UN herin cihê bûyeran, herwiha rê nadin hemû birîndaran jî ku bigihîne nexweşxaneyan.

Li gor rapora Federasyona Navdewletî ya Mafên Mirovan, ku di sala 1922yê de hatiye damezrandin û 164 saziyên mafên mirovan li 100 welatên cîhanê lixwe digire, heya vêga 1665 hevwelatî ji 15ê Adara borî heya niha li Sûriyê jiyana xwe ji dest dane, ji ber şîdeta bikaranîna artêşê û hêzên taybet yên Sûriyê dijî xwepêşanderan.

Herwiha saziya Faz, ku saziyeke navdewletî ye û girîngiyê dide mafên mirovan li cîhanê, 2918 kes jî ku ji aliyê hêzên taybet hatine girtin “çarenivîsa wan ne diyar e”, tenê di heftiya borî de hezar kes li Sûriyê hatine girtin. Sazî dibêje lîsteyek bi navê wan amade kiriye û wêneyên wan û kurtiyeke jiyana wan di malpereke taybet de li ser internetê belav dike.

Li gor amara saziyên sivîl ji destpêkirina xwepêşandanan li Sûriyê heya niha zêdeyê 1700 kes hatine kuştin û 26 hezar kes jî hatine girtin, ku 12 hezar û 617 kes heya niha di zindanan de ne.

# Bêdengiya Tirkiyeyê bêalîtî ye, yan kêfxweşî ye?

▶Endamê rêvebirê AKPê: Herdu alî cîranên me ne, lewma Tirkiye nikare helwêstê werbigire

▶Serokê berê yê MITê: Divê Tirkiye rê li ber mezinbûna şer bigire.

▶Ekinci: Tirkiye bi topbarankirina Îranê kêfxweş e.



**Hêmin Xoşnaw**

Heya niha dewleta tirk derbarê topbaranên Îranê ti helwêsta fermî nîşan nedaye. Li gor çavdêrên siyasî yên Tirkiyeyê ev parastina helwesta serxwebûnê ye. Lê bi baweriya siyasetmedarekî kurd jî, Tirkiye bi vê siyaseta Îranê dilxweş e, lê vekirî nabêje.

Zêdetirî 40 roj in topbarana Îranê li ser navçeyên sînorî yên Herêma Kurdistanê û li ser gerîllayên PJAKê berdewam in. Herçiqasî PJAK dibêje efserên Tirkiyeyê jî di van êrîşan de beşdar in, lê Tirkiye heya niha li ser van êrîşan bêdeng e.

Bêdengiya welatekî weke Tirkiyeyê li Rojhilata Navîn derbarê destdirêjiya welatekî mezin weke Îranê li ser xaka Herêma Kurdistanê, çend xwendinên cuda tîne holê. Çimkî Tirkiye di hemû bûyerên vê dawiyê yên Rojhilata Navîn de ji Misir û Lîbiyayê bigire heya weke Sûriyê û Yemenê peyva wê hebû.

Endamê Konseya Rêveberiya AKPê Prof. Mazhar Bagli dibêje, topbarankirina sînorên Herêma Kurdistanê, kêşeyeke Îraqî-Îranî ye û Tirkiye nikare desttêwerdanê tê de bike: “Helwêsta Tirkiyeyê îro bi çavdêrîkirina rewşê sînordar e, herdu alî jî cîranên Tirkiyeyê ne, lewma nikare helwêstê werbigire.”

Bi dîtina serokê berê yê dezgeha sîxuriyê ya Tirkiyeyê MIT, Mahir Kaynak, “helwêsta serbixwe” ya Tirkiyeyê li himber topbarankirina Herêma Kurdistanê ji aliyê Îranê “Helwêsteke rast e” û dibêje: “Tirkiye bi meşandina bêalîtiyê di vê kêşeyê de siyaseteke rast peyrew dike, lê eger kêşe mezintir bibe û bibe sedemê şer, Tirkiye neçar e helwêstekê werbigire û rê li ber mezinbûna şer bigire.” Çimkî bi dîtina wî têkçûna rewşa aram a Herêma Kurdistanê ne di berjewendiya Tirkiyeyê de ye.

Lê li gor siyasetmedarê kurd Tariq Ziya Ekincî, Tirkiye pir kêfxweş e bi topbarankirina Îranê li ser xaka Herêma Kurdistanê: “Tirkiye kêfxweşiya xwe vekirî li himber siyaseta Îranê nade xuyakirin, çimkî hewl dide di vê qonaxê de ligel BDP û Ocalan nermiyê pêşan bide.”

### Ozel: Ne dûr e Tirkiye alîkariya Îranê bike

Ji dema ku topbarana Îranê destpê kiriye, çend caran PJAK û PKKê ragehandine ku efserên tirk di van êrîşan de hevkariya Îranê dikin, herwiha ajansa Firat News ku nêzîkî PKKê ye, ji ser zarê çavkanîyekê... şekî Îranê belav kiriye ku heya vêga pênc efserên tirk di êrîşên Îranê de li hatine kuştin.

Bi baweriya Tariq Ziya Ekincî: “Artêşa tirk bi nehênî alîkariya Îranê dike.” Lê Prof. Mazhar Bagli vê yekê red dike û dibêje: “Ger Tirkiye piştgiriya Îranê bike, bi awayekî eşkere dike.”

Koluminstê rojnameya Radikalê Avnî Ozgurel bo Rûdawê dibêje, ne ku tenê topbarana Îranê, lê her kiryareke serbazî ya Tirkiyeyê li ser Herêma Kurdistanê kêşeyan aloztir dike û di vê qonaxê de pêwîst nake: “Ger her gefek li ser xaka van herdu welatan hebe, dikare bi rêkkeftin ligel Herêma Kurdistanê pêşî lê bê girtin. Îran û Tirkiye dikarin bi pevguherandina agahiyên sîxuriyê wan gefên li ser xwe pûç bikin.”

Solî Ozel, ji Zanîngeha Bilgi ya Tirkiyeyê, ku pispor e di pêwendiyên navdewletî de, helwêsta Tirkiyeyê li himber êrîşên Îranê, girêdide bi encamdana operasyonên derveyî sînor: “Piştî zêdebûna êrîşên PKKê qala pêkanîna operasyonên derveyî sînor tê kirin. Lewma ne dûr e di warê agahiyên sîxurî de Tirkiye hevkariya Îranê bike.”

Ji bilî serokê Herêma Kurdistanê û serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê, di dawiya heftiya borî de, Hoşyar Zêbarî di civîneke çapemeniyê de daxwaza ragirtina topbarana Îranê kir. Lê got ji bo helwêsteke hevbeş di navbera Bexda û Herêma Kurdistanê de, cara yekê divê agahiyên tomarkirî hebin derbarê hatina pêş a Îranê, ne ku aliyek bêje Îran destdirêjiyê dike û aliyekî din bêje bandor li ser sûka Silêmaniyê nekiriye.

## Mihemedê 13 salî bi topên Îranê hat kuştin

**Hewlêr (Rûdaw) -** Mihemed Enter (13) li gel mamekê xwe ji bo şivanên li zozanên sînorê nahyeya Hacî Omeran nan dibin. Mihemed bi gopalê di destê xwe de çavdêriya pezê xwe dikir ku heya şivan nan bixwin, lê dengê topek ya Îranê dîmenê hemû navçeyê guhert û Mihemed di nav xwînê de hêla. Mamê wî dibêje: “Top 3 metre li kêleka wî ketibû, aliyekê serê wî nemabû û singê wî parçe parçe biribû.”

Mala Mihemed Enter li Batasî ya girêdayî navçeya Herîr e. Roja 28ê tîrmehê li zozanên Berdesoran ku nêzî Hacî Omeran e, dibe qurbaniyek din ê topbaranên Îranê. Bi vê yekê jî hêjmara qurbaniyên topbarana Îranê bûn 3 kes. Heftiya borî jî 2 şivanên din li zozanên girêdayî nahyeya Sîdekan bi topên Îranê hatibûn kuştin.

Bavê Mihemed, Enter Zirar bi awayekî kelegirî ji Rûdawê re got: “Ez Pêşmergeyê Zêrevanî me û wê rojê li Spîlkê li dewamê bûm. Telefon ji min re hat û gotin, kurê te Mihemed bi topên Îranê hatiye kuştin. Min jî got, çawa topên Îranê digihe Batas. Got, li gel mamê xwe Ebdullah çûye zozanan û li wê derê hatiye kuştin.”

Mamê Mihemedê hatî kuştin Ebdullah Zirar, serpêhatiya xwe wiha got: “Ez her sê roj carekê xwarin ji şivanan re dibim. Wê rojê, Mihemed got; mamo ez jî têm. Min çend carên din li gel xwe biribû, em 2 rojan li gel şivanan man û roja duyemîn hat kuştin. Di dema bûyerê de şivanan xwarin dixwar. Ez û Mihemed, her yek ji me li aliyekê pez rawestabûn. Nêzî 200 metreyan ji min dûr bû. Îranê ew navçe topbaran dikir û em 10 km ji sînor dûr bûn. Top 2 km dûrî me diketin, ew di nava tozê de winda bû. Min bang kir, ti dengek nehat. Dema ez giham ser, jiyana xwe ji dest dabû.”

## Ereb heyfa Xaneqînê li Celewla û Sadiye distînin

# 7000 malbatên ereb piştî rûxandina Saddam hatine Celewla û Sadiye




Wêne: Rûdaw

**Newzad Mehmûd** Silêmanî

Xelkê Xaneqînê piştî rûxandina rijîma Saddam bi alîkariya hêzên Pêşmerge yên ku li navçeyê bûn, têkiliyeke xurt a îdareyê digel Hikûmeta Herêma Kurdistanê avakirin. Vê yekê wisa kir ku bajarokê Xaneqîn tenê li ser kaxez û destûrê weke navçeyeke cihê nakokiyê bimîne, ji ber mîna Qaymeqamê wê dibêje "niha rêjeya Ereben ku anîbûn Xaneqînê 'sifir' e", lê Berpirsyarê Buroya Maddeya 140 li Xaneqînê dibêje "heyfa vê li Celewla û Sadiye hatiye hilandin."

Xaneqîn kevintirîn qeza ye li Îraqê û ji sala 1974ê û vir de prosesa erebkirinê dest pê kir û ji sedî 70ê rûniştvanên wê hatin veguhestin. Meziniya xaka Xaneqînê 3987 kîlometroyên çargoşe ye, 250 gund û 5 navçeyên wê hene ku 3 ji wan girêdayî Herêma Kurdistanê ne û 2yên din jî di bin desthilata Parêzgeha Diyala de ne. Hejmara rûniştvanên wê berî rûxana Saddam 35 hezar kes bûn, lê niha gihaye 170 hezar kesan. Qaymqamê Xaneqînê, Mihemed Hesen, dibêje ku "bêtiriya muxtarên navçeya Tibit guhdariya me nakin, mixabin bêtiriya berpirsên kurd jî heta niha rojekê jî nehatine Xaneqînê û her nizanin ev bajar li kû ye. Kes deng nabihîse û xwîna Kurdan belaş diherike."

### Erd di destên Kurdan deye û girêbest bi navê Ereban e

Mîna ku Rêveberê Çandiniya Xaneqînê, Kameran Ebdulla, behs dike, Baasiyan di dirêjahiya prosesa erebkirinê de zeviyên 800 cotkarên navçeyê xistine ser navê 1312 cotkarên Ereb. Kameran Ebdulla herwiha got "ew zevî niha ketine destên cotkarên kurd, lê girêbest hêjî bi navê Ereban in û divê Maddeya 140 bi şêweyekî yasayî ji wan re vegerîne." Kameran Ebdulla heriha got "ji bilî wan zeviyan herwiha hejmareke mezin a xanî û milkan jî bi navê Ereban e. Em neçar in li gor girêbestên sala 1974ê bi wan re bidin û bistînin."

Wirya Mihemed (45) mamosteyê zimanê kurdî ye li Xaneqînê û ew 25 salan veguhestibûn Semawe (Başûrê Îraqê). Wirya dema vegeriya Xaneqînê zeviya xwe ji Erebekî xelkê Dîwaniye (Başûrê Îraqê) stand, lê niha jî zevî bi navê wî Erebî ye. Mamoste Wirya digel hêviya vegerîna bajarokê wî bo ser Herêma Kurdistanê, dixwaze zeviya wî jî bi şêweyekî yasayî li wî bê vegerandin. Qaymeqamê Xaneqîn, Mihemed Hesen, dibêje me çendîn caran nivîs şandine da ku pirsgirêka milkdariyê li Xaneqîn çareser bikin, lê heta niha tiştek nehatiye kirin û got "rûberê xaka Xaneqînê 3987 kîlometroyên çargoşe ye, lê ji sedî 1ê zeviyên wê bo xwediyên wan nehatine vegerandin."

### Li Xaneqînê du îdare

Li Xaneqînê ji bilî polîs û qaymeqam, hemû daîreyên hikûmî du ne, yek girêdayî Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye û ya din jî bi Parêzgeha Diyala re tevdigere. Qaymeqamê Xaneqînê di wê derbarê got "ev biryara me bû ku em ji aliyê îdarî digel Hikûmeta Herêma Kurdistanê tevbigerin, lê ev ne bi dilê Diyala ye û pirsgirêkan ji me re çêdike." Lê Serokê Civata Parêzgeha Diyala, Seyid Talib Mihemed, red dike ku wan pirsgirêk çêkiribin û got "Diyala tenê çavdêriya karûbaran dike, nêrîna parêzgar jî himber vê yekê ne xerab e."

**Qaymeqamê Xaneqînê: Bêtiriya berpirsên kurd heta niha rojekê jî nehatine Xaneqînê**

### "Amerîka ji bo Erebkirinê rê xweş kirine"

Li nava bajarê Xaneqînê hêzeke mezin a Asayiş û Pêşmerge di nava xelkê de hene û çavdêriya rewşa ewlehiyê dikin. Li ser cilên beşeke wan nivîsiye "Pêşmergeyên Kurdistanê" ku girêdayî PDK û YNKê ne. Çavkaniyeke ewlekariyê li Xaneqînê dibêje "ev aramî û ewlehiya li Xaneqînê heye, tenê ji ber hebûna hêza Pêşmerge ye." Rêvebirê Buroya Maddeya 140 li Xaneqînê, Ednan Mensûr, dibêje "eger guhdariya me kiribûne û Pêşmerge ji Celewla û Sadiye paşde nekişandiba, niha Celewla û Sadiye jî mîna Xaneqînê dibûn, lê kesî guhdariya me nekir." Ednan Mensûd behsa rewşa ji dest derketî ya Celewla û Sadiye dike û dibêje "li Celewla û Sadiye heta niha bêtirî 200 kesên ji Eşîreta Zergoşî hatine şehîdkirin, rêjeya Kurdan ji sedî 60 daketiye ji sedî 15."

Qaymeqam beşeke sedemên vê rewşê dixe stûyê Amerîkiyan: "Amerîkiyan rê ji bo serhildana erebkirinê xweş kir, Kurd îqna kirin ku hêzên xwe paşde bikşînin û piştre ji xerabtirîn eşîretên Ereban, ku Kron e, batalyona awarte avakir û prosesa erebkirinê careke din aktîv bû." Wî herwiha got "piştî prosesa azadiya Îraqê 7000 malbatên Ereb anîne Celewla û Sadiye, vêca çi ramaneke Maddeya 140 dimîne. Kurd berdewam direvin û serokatiya Kurdan jî guhdariya ti kesî nake."

Herdu Polîtburoyên PDK û YNKê di civîneke hevbeş di 24ê temûza 2011ê de behsa rewşa navçeyên veqetyayî kirin û ji Hikûmeta Îraqê xwestin ku divê Kurdên navçeyên Mûsil, Kerkûk û Xaneqînê bên parastin. Parlementerên kurd yên Parlemena Îraqê jî bi bîrxistokekê daxwaz kirin yan giyanê Kurdên navçeyên Celewla û Sadiye bê parastin, yan divê Pêşmerge vegere wan navçeyan.

Hêzên Pêşmerge li gor lihevhatinekê digel hêzên Amerîka û Îraqê di tebaxa 2008ê de ji Celewla û Sadiye paşde kişiyan. Qaymeqamê Xaneqîn dibêje "me nehêla, naxwê wê ji Xaneqînê jî derketibana." Piştî paşdekişîna hêzên Pêşmerge 800 malbatên Kurd ji Celewla û Sadiye derketine. Ti alî xwedî li vê meseleyê dernakeve, Serokê Civata Parêzgeha Diyala jî behsa nûtirîn çareseriyê dike: "Pêwîste rêjeya polîs û hêzên ewlekariyê li gor rêjeya neteweyan dabeş bikin. Ji sedî 50 Ereb, ji sedî 10 Tirkmen û ji sedî 40 jî bidin Kurdan, ev çareseriyeke baş e." Seyid Talib Mihemed dibeje ku divê Wezareta Hundir a Îraqê " ji nû ve dabeşkirina hêzên ewlekariyê di bin çavan re derbas bikin." Lê Rêvebirê Navçeya Celewla, Enwer Husên, di nêrîneke din de ye û dibeje "bêyî vegerîna hêzên Pêşmergeyan ev pirsgirêk çareser nabe û kes newêre vegere bajarê xwe. Baweriya kesî nemaye."

### "Her tişt li vir kurdî û Kurdistanî ye"

Tevahiya nivîsîn û navûnîşanên dikan û bazarên Xaneqînê kurdî ne. Hin dikandar û firoşkaran alayekî biçûk a Kurdistanê li ber sînga xwe danîne. Asayiş bi hûrbînî çavdêriya hemû tevgeran dike. Tamir Fuad (25) dibêje "Xaneqîn ne mîna Kerkûkê ye, li vir her tişt kurdî û Kurdistanî ye."

Çavkaniyeke haydar behsa wê yekê kir ku Xaneqîn bûye meydana tevgera îstixbarata Îranê (Îtilaat) jî. Rêvebirê Asayişa Xaneqîn, Efser Omêd, di wê bareyê de tenê got "em ê çawa bizanin kî Îtilaate, gelek xelk bi vîza tên, vêca em ê çawa Îtilaatê nas bikin."

Rêvebirê Asayişa Xaneqînê, aramiya wî bajarî bi hebûna hêzên asayişê girêdide û dibeje "em berdewam çavdêriya wan mal û ciyan dikin ku xelkên nêzîkî Ensar el-Îslam û Baasî lê hene. Em her roj çend kesên guman li ser tînin asayişê û lêkolînê bi wan re dikin." Efser Omêd herwiha got "me di dema borî de karî 6 endamên Ensar el-Îslam binçav bikin ku Kurd û Ereb in. Eger em ne hişyar bin, hevalên Ensar, Qaîde û Baasî li vir hene."

### Bexda dixwaze xwendina kurdî têk bibe

Bexda ev çend sal in hewla têkdana prosesa zîndîkirina xwendina bi kurdî li Xaneqînê dide. Selam xwendekarekî kurd ê qonaxa amadeyî ye û behsa wê yekê dike ka çawa zarokên Kurdan ji neçarî hizra zivirîna bo xwendina erebî dikin: "Bi dirêjahiya salê em li gor programa xwendina Kurdistanê dixwînin, lê dawiya salê pirsyarên me ji Bexda tên û em tiştekî jê nizanin." Ew xwendekar destpêkê gelekî kêfxweş bû ku êdî ne mecbûre bi erebî bixwîne.

Xwendina kurdî gelekî zû li Xaneqînê dest pê kiriye. Sala 2003yê de yek xwendîngeha kurdî nebû. Li gor statîstîkên Perwerdeya Xaneqînê niha li Xaneqînê 56 dibistanên seretayî, 25 yên navendî û 2 yên amadeyî bi kurdî ne. Herwiha 19 dibistanên seretayî, 17 yên navendî û 2 yên amadeyî jî bi erebî ne. Ev hemû dibistan jî li gor program û sistema Herêma Kurdistanê dixwînin.

Rêvebirê Perwerdeya Xaneqînê, Mihemed Saye, dibêje "xelk aciz in, em bi programê Kurdistanê dixwînin û komîteyeke ne pispor û ne haydar ji Bexda pirsyaran ji me re neşînin, ji ber ku eger wisa dom bike wê zarokên me ji neçarî berê xwe bidin xwendina erebî."



# "Xweseriya Demokratîk rewabûna xwe ji hiqûqa navnetewî digire"

» Yek ji sedemên cûyîna me ya parlemenê ew e ku em daxwaziyên kurdan bibin wê derê. Gelê Kurd ne bê alternatîv e. Makezagon ne demokratîk be em ê çarenivîsa xwe bixwe diyar bikin.

Kongreya Civak a Demokratîk ku li Bakurê Kurdistanê BDPê û gelek sazî, dezgeh û kesayetên siyasî digire nava xwe, di 14ê Tîrmehê de "Xweseriya demokratîk" îlan kir. Di rayagiştî de niha Xweseriya Demokratîk tê nîqaşkirin û tê pirsîn ka naveroka wê çi ye, gelo bingeha wê ya hiqûqî heya, wê çawa têkeva pratîkê, wê di nava civakên Tirkiyeyê de cûdabûnê çêke yan zêde bigihîne hev... Me jî van pirsiyaran ji parlementerê BDPê yê Wanê Nazmi Gur pirsî.

### Xweseriya Demokratik çi ye?

Çarçoveya Xweseriya Demokratîk a ku KCD ragihand û BDPê jî pejirand, wiha ye:

*1- Bo demokratîkbûnê pêdiviya Tirkiyeyê bi reformên radîkal hene.*
*2- Guhertina dewletê ne bes e, di birêvebirinê de tevlîbûna civakê jî girîng e.*
*3- Ji bo çareserkirina pirsgirêkan hêza herêman divê bê xurtkirin, gel divê bibe xwediyê gotin û biryarê.*
*4- Ji bo tevlîbûna gel a pêvajoyê, hîmên demokratîk diparêze û di hemû rêvebiriyên herêmî de sîstema meclisan pêk tîne.*
*5- Li şûna xweseriya etnîkî û xweseriya li gor erd hatiye avakirin, rêvebiriyeke herêmî ya li ser azadiya hemû kulturan pêşniyaz dike.*
*6- Al û zimanê fermî ji bo hemû Tirkiyeyê ye, lê divê her herêm bi reng û cudahiyên xwe rêveberiya xwe saz bike.*
*7- Rêveberiya demokratîk a xweser, wek meclisa herêmî tê sazkirin. Ev meclîs dikare hem serokê xwe û hem jî rêveberiya xwe hilbijêre.*
*8- Hemû herêm, bi navê xwe yê taybet an jî bi navê bajara xwe ya herî mezin, tê binav kirin.*
*9- Waliyên herêmên xweser hem bi fermanên navendî û hem jî li gor biryarên herêmî karê xwe dikin. Şaxên herêman ên wezaretan jî wiha karê xwe dikin. Meclîsên bajêran, yên şaredariyan û muxtarî weke berê didomin.*

### Li Ewropayê herêmên xweser

Li Ewropayê herêmên xweser ên ku bi rêbazên cuda tên rêvebirin ev in: Giravên Aland ser bi Finlandiya, Giravên Faroer ser bi Denmarkê, li Îspanya herêma Galiçya, Bask û Katalonya û 14 herêmên din; li Brîtanya welatê Îskoçya, li Îtalya herêma herî dewlemend Tirola başûr, li Portekizê giravên Azor û Madeira, li Belçîka herêma almanan, li Moldovya herêma Gagavuz û li Ukraynayê herêma Kirim.

**KCD li Amedê di 14ê Tîrmehê de Xweseriya Demokratîk ragihand. Tevgera kurd çima pêwîstî bi gaveke wiha dît?**

Ragihandina Xweseriya Demokratîk, helwest û îradeya Kurdan a çareseriyê ye. Kurdan ev peyam dane hikûmetê: Êdî pirsgirêka kurd bi demê ve dirêj neke, me nebe û neyîne mafên me yên bingehîn bipejirîne.

**Pêvajoya avakirina bingeha wê çawa be?**

Wê Kurd bi rêbazên demokratîk Xweseriya Demokratîk ava bikin. Ragihandina Xweseriya Demokratîk ragihandina mafên me yên mînîmûm in. Ragihandina iradê ya ji bo çareseriyê ye. Ne tenê ji bo Kurdan, ji bo hemû Tirkiyeyê pêngavek demokratîk e. Eger Tirkiye naxwaze bibe wek diktatoriyên wek Sûriyê, Misir û yên Rojhilatanavîn, divê bersiva vê daxwaziyê bide.

**Baş e, bingeha huqûqî ya Xweseriya Demokratîk heye?**

Hem di nava huqûqa hundir û hem ji di huqûqa navnetewî de cihê Xweseriya Demokratîk heye. Di hemû peymanên ku Tirkiyeyê bi dezgehên ewropî û yên navnetewî re îmze kirine, ev maf tê destnîşan kirin. Ev hemû peyman ji bo ragihandina Xweseriya Demokratîk dibin bingehên huqûqî. Di Makezagona Tirkiyeyê de xala 90. hukmê hemû yasayên navnetewî dipejirîne. Me pişta xwe daye van yasa û peymanan û Xweseriya Demokratîk ragihand.


Wêne: Rûdaw

**Wê Xweseriya Demokratîk çawa têkeve pratîkê?**

Pêvajoya avakirina wê ji du beşan pêk tê: Yekem, wê makezagoneke çawa bê amade kirin û wê çiqas demokratîk be. Duyem, em dixwazin ku Xweseriya Demokratîk têkeve bin parastina makezagonê.

Beşa duyem, bi peformansa pêşvebirina kurdan a li herêmên xwe ve girêda ye. Me bi gelê xwe re di pêşxistina demokrasiyê de li herêmên xwe gavên mezin avêtin û em ê hewldanên xwe bidomînin.

**Hûn Xweseriya Demokratîk ji bo hemû Tirkiyeyê pêşniyar dikin lê di rayagiştî ya tirk de ev pêngav weke projeya cûdabûnê tê dîtin. Hewldan hene ku hûn projeya xwe ji Tirkan re vebêjin?**

Em yekgirtina netewî, sînorên netewî û sembolê netewî nîqaş nakin. Em pêkanîna vê pêngavê ji bo hemû Tirkiyeyê dixwazin. Hinek derûdor hene vê pêngava me reş dikin, weke projeyeke tehlûke nîşan didin. Lê em hewl didin xwe ku derbarê pêngavê de agahî bidin rayagiştî ya tirk.

**Hûn ê vê pengavê bibin parlemenê?**

Yek ji çûyîna me ya parlemenê jî ew e ku em maf û daxwaziyên kurdan bibin wê derê.

**Gelo makezagon piştgiriyê nede pêngavê, hûn ê çi bikin?**

Gelê kurd ne bê alternatîv e. Eger hikûmet niyeta xwe ya baş bide alî û li gor sloganên "yek dewlet, yek netew" makezagonê amade bike ev nabe makezagoneke demokratîk. Wê gavê wê Kurd jî çarenivîsa xwe bi xwe diyar bikin.

**We got em ê vê pêngavê bibin parlemenê, gelo ev tê wê wateyê ku hûn û di 1ê Cotmehê di vekirina parlementoyê de beşdar bibin û sond bixwin?**

Parlemento niha di bêhnvedanê de ye, eger pêwendiyên me bi AKPê re encam bidin û bûyerên ne çaverêkirî rûnedin wê gruba me di 1ê cotmehê de li parlemenê amade be. Lê eger AKP niyetek baş nîşan nede û rêyên demokratîk veneke em ê wek gruba BDPê careke din rewşê binirxînin.

***Hevpeyvîn: Firat Baran***

---

## Ahmet Dere

# Rejîma tirk



Roja 29ê tîrmehê serfermandarê tirk Işik Koşaner tevlî 3 orgeneralan ji wezîfeya xwe dest kişandin û teqawutbûna xwe xwestin. Di dîroka Komara Tirkiyeyê de ev cara yekem e ku di nava artêşê de tiştekê bi vî awayî diqewime.

Piştî teqîna bûyera Farqînê, ji cur be cur derdoran deng derketin. Muxalefet, bi taybetî MHP û CHPê, weke dema borî, ketin nava hewldanan, daku bingeha pirsgirêkê bi AKPê ve girê bidin û li hemberî hikûmetê bixebitînin. BDPê jî, bi daxûyaniyekê, heman bûyerê weke hilweşandina artêşê li hemberî şerê li dijî PKKê da xûyan. Lê belê, piştî çend saetan, rayedarên hikûmetê û herweha ji Çankayayê hate ragihandin ku « her tişt bi awayekê asayî didome ».

Helwesta serfermandar û generalên tirk tiştekê asayî nîne, li pişta perdeyê pir sedemên girîng hene. Çendî AKP bêje « bûyer asayî ye », dema ku mirov li rewşa giştî ya vî welatî dinêre, ev helwesta leşkeran tabloya rastiyekê lezgînî derdixe holê. Di nava artêşê de nerihetî û herweha dubendî her ku diçe kûrtir dibe.

Mirov dikare şerê li Kurdistanê weke sedemeke vê rewşa artêşa tirk bibîne, lê belê ew ne sedemê yekem e, divê em xwe nexapînin. Ji sala 2002ê vir ve di navbera desthilatdariya siyasî û hêza leşkerî de nakokî hene. Operasyonên Ergenekon û Balyozê ev nakokî kûrtir kirin. Encamên daxwaza AKPê (divê em weke daxwazên Cemaeta Fetullah Gulen bibînin), ya derbarê xwe tenzîmkirina di nava dewletê de, bûn sedemê girtina pir rayedarên leşkerî. Sala borî Işik Koşaner bi dilekê sar hate ser wezîfeya Serfermandariyê, dema ku wî dît ew nikare statûkoya kevin ya artêşê biparêze, ji bilî daxwaza teqawutê tiştekê din li pêşiya wî nema. Weke nûnerê statûkoya kevin ya artêşê, Işik Koşaner neçar ma ku vê gavê bavêje.

Dema ku ez vê nivîsê ji bo Rûdawê dişînim, civîna Şûra Leşkerî ya Bilind, ku her salê carekê pêk tê, li Enqereyê dest pê dike. Piştî bûyera 29ê tîrmehê, destê AKPê xurttir bûye û di vê civînê de ew ê li gorî daxwazên xwe Serfermandariya Artêşê temzîm bike.

Dema ku mirov bi çavekî hemdem li rewşa mijara gotinê binêre, bêguman nêzîkatiya AKPê li gorî sîstema demokratîk e. Di sîstemên demokratîk de divê artêş li gorî desthilatdariya siyasî, ku ji aliyê gel ve hatî hilbijartin, tevbigere. Eger nêzîkatiyên AKPê, yên derbarê tenzîmkirina artêşê de, li gorî daxwazên gel bin, bêguman tiştekî ku mirov îtiraz bike tune. Kesên ku AKPê nas dikin, dizanin ku armanca wê ne bersivdana daxwazên gel e, ew li gorî armanca « hin hêzên cuda » tevdigere.

***Divê ev jî werin zanîn:***

*1- Şerê li Kurdistanê psîkolojiya artêşa tirk xirab kiriye.*
*2- Çi û çawa dibe bila bibe, serdestiya hêza siyasî ji ya hêza leşkerî baştir e.*

Otomatên leystikê niha li Almanyayê cûreya qumarê ya herî zêde û herî metirsîdar e.

# "Ez di xew de jî dileyîzim"

Piştî ku Samî dest bi leyîstina otomatan kir pereyê xwe, jin û du zarokên xwe, hevalên xwe û tendirustiya xwe wenda kir û niha nikare razê.

Mehmet Sebatli

Weke nexweşekî şekir wî di rûniştina me ya du demjimêran de li kafeteryayekê, qet nebe sê car caran li saeta xwe mêze kir. Ji hal û helwêsta wî xûya ye ku sebra wî zêde nemaye, divê xwe bi lezgînî bigihîne cihekî ku tê de otomat hebin û bileyîze.

Leyîstina qumarê ne tenê di navbera mirovan de dibe; bi dehan cûreyên leyîstina qumarê hene ku mirov ne li himberê mirovên din dileyîze. Ji vê cûreyê qumarê re bi giştî leystikên şansê tê gotin û li welatên ewropî dezgehên dewletê nikarin pêşî li belavbûna van leyîstikan bigirin. Di nava van leystikan de behsên leystikên hemû cureyên sporê, behsên bazdana hesp û kûçikan hene. Di van leystikan de li himberê te kesek tune, lê mirov derbarê encama pêşbirkê de texmînên xwe diyar dike û pere datîne ser. Lê cûreyek din a leystika şansê heye ku li himberê mirov ne sportvan û ne jî heywanên bazdanê hene, tenê kompûterek programkirî heye û ew jî li gor wendakirina kesan hatiye program kirin.




### Hevalê wî tilyak bû, wî jî kir tilyak

Samî (36) zilamekî kurd e û 14 sal in li Almanya, li bajarê Essenê dijî. Du zarokên Samî hene, lê ew 4 sal berê ji hevjîna xwe cûda bûye û niha mehê carekê, caran jî du mehan carekê, zarokên xwe dibîne: dema ku pere pê re hebe. Samî tilyakê leyîstina otomatê ye û wek ew dibêje, nikare dev jê berde.

Çîroka Samî wêneyekî tekane lê zêde bi bandor e, ji ber ku li Almanyayê bi sedhezaran mirovên tilyakê leyîstina otomatan hene. Samî ji me re derbarê destpêkirina vê qumarê wiha dibêje: "Beriya 6 salan jiyana min a malbatî, ya tendirustî û ya aborî baş û normal bû. Ez û hevalekî xwe bi hev re fîrmeyek li ser karê înşaata hundirîn vekir. Ango karê fayansê. Hevalê min tilyakê qumarê bû û herdiçû mijûlbûna wî li ser kar kêm dibû. Nedihat kar, sozên ku dida Almanan di dema xwe de pêknedianî û di dawî de me top avêt û me fîrme girt. Jina hevalê min zaroka xwe girt û reviya çû xwe sipart polîsan."

**Di guhê min de 24 demjimêr tinge tinga otomaten heye, li ber çavên min jî ekrana rengîn a otomatan heye û ez nikarim razêm**

### Di rojekê de 2 hezar euro qezenc kir

Tiştên ku hatine serê hevalê wî, piştê demeke kurt yek bi yek tên serê Samî jî. Ew çîroka hevalê xwe berdewam dike: "Wê demê kurê min 4 salî bû û keça min jî nû hate dinyayê. Lê ez bê kar bûm. Ji ber ku fîrme bi fermî li ser navê min bû hemû deyn ketin stûye min. Lê min nekarî bidim û li himberê dewletê ez bûm deyndar, ango ez ketim Schûfayê (Lîsteya deyndaran li Almanyayê). Min erebe firot, zêrên jina xwe jî firotin... Hevalê min jî bê kar bû û her roj li kazinoyan bi otomatan dileyîst, carnan dihat cem min û digot min îro 2 hezar euro kezenc kir."

Samî li rewşa xerab a hevalê xwe mêze nake, lê guh dide gotinên wî yên derbarê qezenckirina pere. Û ji xwe dipirse, "Ez jî çima şansa xwe neceribînim?"

"Destpêka mehê ya sala 2005ê bû, baş tê bîra min meha mijdarê bû. Min ji bankeyê pereyê kirêya malê, pereyê zarokan û xerciya me ku dewletê şandibû ser hesabê me, ku 1800 euro digirt, min hemû kişand û xiste berîka xwe û ligel hevalê xwe em çûn kazînoyekê. Li wir bi dehan otomat hebûn û ez û hevalê xwe li kêleka hev me du otomat girtin û dest bi leystinê kirin."

Wê rojê Samî di berîka xwe de 600 euro vedigerîne malê. Wî 1200 euro wenda kiriye. "Min kirêya malê nerazand, lê ji bo xerciya malê min wê şevê 300 euro da hevjîna xwe."

Samî roja din bi mebesta ku pereyê xwe yê wendakirî dîsa bi dest ve bîne, diçe heman kasînoyê. "Di berîka min de 300 euro hebûn. Hevalê min gotibû ku eger beriya te mirovek du mirov bi otomatekî leyîstibin û ji wan re pere derneketibe, here ser wê otomatê. Min du sê saet derdora xwe temaşe kir. Zilamek çînî piştî ku gelek pere wenda kir û bi hêrs dev ji otomatê berda û çû, ez çûm ser wê otomatê."

Roja duyem hinek şansa Samî tê cîh û nêzikê 700 euro bi dest ve tîne û pereyê xwe dike 1000 euro. Lê dîsa 500 euro zerara wî heye.

Samî bê kar e û ji wê rojê şûnde hemû rojên wî di kasînoyan de derbas dibin. Rojek hinek pere ji otomatê qezenc dike, lê rojek din hemû wenda dike, her diçe pereyê ku wenda dike zêde dibe. Ew jî hewl dide ku pereyê xwe dîsa bi dest ve bîne, lê her diçe zerara wî kûrtir dibe. Malê û zarokan ji bîr dike. Em guh bidin wî: "Min her roj piştî zerarê sond dixwar ku careke din neleyîzim, lê dibû sibe û lingê min dîsa min dibirin wê derê."

Hevalê Samî hawara xwe gihandiye psîkologan, dest bi tedawiya psîkolojîk kiriye ku nêzikê du salan dom dike. Lê Samî? "Piştî du salan leyîstina otomatê hevjîna min êdî nema karibû tehamûlê min bike. Ji ber ku min hemû pere dibir di otomaten de wenda dikir û ew û zarok li malê birçî diman."

### Mamosteyan polîs agahdar kirin

Pirsgirêk li malê zêde dibin. Ji ber ku pêdiviyên zarokan ên dibistanê nayên dabîn kirin, zarok bala mamosteyan dikişînin û ew jî Jugendamt (Saziya Parastina Ciwanan) û polîs agahdar dikin. Samî didome: "Hew mabû herdu zarokên me ji me bistînin. Lê hevjîna min li zarokan xwedî derket û bi rêya dadgehê xwe ji min cûda kir."

Samî ne tenê pereyên xwe û malbata xwe wenda kiriye, herwiha tendirustiya wî jî xirab bûye. Ew di dema leyîstinê de ji bîr dike ku tiştek bixwe û vexwe. Tenê cigarê dikişîne û qehwê vedixe û rûdinê. Hevalên wî kêm bûne. Ji ber ku naxwaze karekî bike, dewlet ceza lê dibire û pereyê wî kêm dike. Ew niha tevî kirêya xanî mehane 530 euro distîne. Samî ji bîlî van pirsgirêkan nikare bi şev razê. Ji ber ku "Di guhê min de 24 saet dengê tinge tinga otomatan heye, li ber çavên min ekrana otomatan a rengîn heye ku hertim diguhere. Ango ez di xewna xwe de jî bi otomatê dileyîzim. Ez nema dikarim razim û nema dikarim dev jê berdim."

Dema krîza wî hatibû. Samî êdî nema dikarî li cem me rûnê. Ew ji kêleka me rabû û bi lezgînî, weke ku ji zindanê ber bi azadiya xwe ve biçe, weke ku tiştek ne li benda wî be, pişta xwe dide me û diçe...

Piştî rexneyan Kurd di bin alaya xwe de dimeşin

## Nezikî 100 kesan roja şêmiyê li bajarê Munchenê rejîma Sûriyê protesto kirin

*Munchen (Rûdaw) – 30ê tîrmehê, li bajarê Munchenê, li meydana Karlsplatzê dîsa aştixwazên alman, kurd û ereb rejima Sûriyê protesto kirin.*
*Çalakî ji aliye grubek kurd bi navê “Freiheit fur Syrien-Azadî”, Komkar, “Flüchtlingsrat Bayern“ û hinek hezên muxalefeta dijî rejîma Sûriyê ve hat li dar xistin. Çalakiyê saet 5ê evarê dest pe kir û di 8ê evarê de bi dawî bû. Di çalakiyên borî de Kurdan li şûna ala Kurdistanê alaya Sûriyê hilgirtibûn û ev yek bûbû cihê nerazîbûna gelek Kurdan. Lê bele vê carê di çalakiya li Munchenê de ji her perçeyên Kurdistanê de Kurd kombûn û di bin alaya Kurdistanê de meşiyan. Sloganên ku di mîtingê de hatin qîrîn, ev bûn: “Bijî azadiya gelên Sûriyê“, “Bila rejima Esad hilweşe“, “Piştgirtî bo muxalefeta Sûriyê“ û “Em li dijî rejîma Esad alîkariya Ewropa dixwazin - Bila êrîşa artêşa sûrî be sekinandin!“*



Wêne: Rûdaw



# Jineke kurd li Hollanda "şewitî"

▶Medyaya hollandî: Jineke kurd şewitî.

▶Dayîka wê: Keça min xwe şewitand.

**Hollanda (Rûdaw)-** Li Hollanda jineke kurd a 25 salî di encama şewitandinê de bi rengekî giran birîndar bû. Medyaya hollandî bûyerê wek "li ser meseleya şerefê rûda" binav kir, dayîka jina 25 salî bo Rûdaw wan daxuyaniyan ret dike û dibêje: "Em ê wan bidin dadgehê“

Li gor agahiyên polîsê hollandî, êvara 26ê tîrmehê li bajarê Delft a li Hollanda jineke 25 salî piştî bûyera şewatê rakirine nexwasxaneyê. Di daxuyaniya polîs de derbarê nasnameya jinikê de ti zanyarî tunebû, lê Rûdaw pistî lêkolînek derxist holê ku ew jin Kurd e ji Başûrê Kurdistanê ye û navê wê Ş.ye. Li aliyê din li gor agahiyên polîsê bajarê Den Haagê jî du zilam (yek 39, yê din 44 salî) wek tewanbarên bûyerê hatine girtin. Rûdawê derxist holê ku ev herdu kes Kurd in û niştecihên Delftê ne û yek hevserê jinikê û yê din jî tiyê wê ye.

Piştî daxuyaniya polîs dezgehên medyaya hollandî jî bal kişandin ser bûyera şewatê. Rojnameya hollandî Telegraf debarê bûyerê de nûçeyek belav kir ku bûyerê wek “Bo tola şerefê hatiye kuştin“ wesif kir. Heman rojname daxuyaniya endamekî partiya VVD jî dide ku ew gotiye: “Pêwîst e bo bûyerên wiha cezayên tûndttir bên dayîn. Kenala televîzyonê SBS 6 a hollandî jî di raportek taybet de dîmenên destgirtina herdu kesan û birina jina şewitî bo nexweşxaneyê weşand. Di heman raportê de cîranek hollandî mala ku bûyer lê rûdaya nîşan dide û dibêje: “Min dengek bihîst ku digot `help` û alîkarî dixwest. Ez jî çûm wê malê, li min di li hundir derbarê agir de hîç tiştek nedît."

Dayîka jina 25 salî ya şewitî, bo Rûdawê wan daxuyaniyan red dike û dibêje: "Em ê wan bidin dadgehê“. Dayîka jina şewitî jî da zanîn ku agahiyên medyaya hollandî hemû derew in, û got “Ti mirovek nikare kesekî din bişewitîne. Em ê wan bidin dadgehê. Keça min agir bera xwe daye.“

Polîsê hollandî jî ji rûdawê reregehand ku hîn lêkolîna pizîşkî û debarê herdu kesên girtî de lêkolîna dadî didome.

## Xortê kurd ji paşveşandina Îtalyayê rizgar bû

**Koln (Rûdaw) -** Xortekî kurd yê 16 salî ji Rojavayê Kurdistanê ev du mehan di girtîgeha Stadelheim ya bajarê Munchenê de bû û di metirsiya paşveşandina Îtalyayê de dijiya. Lê piştî ku endamên Parlemetoya Eyaleta Bayernê yên Partiya Keskan (Die Grünen) û Saziya Penaberan ya Bayernê (Flüchtlingsrat) ketin nav hewldanan û nerazîbûna xwe li hemberî daxwaza paşveşandina xortê murd yê bi navê Abdo Basel nîşan dan, biryara paşveşandina wî xortî bo Îtalyayê hat rawestandin. Li gor daxuyaniya Saziya Penaberan ya Bayernê, parêzerê xortê murd herwiha karîbû wî ji girtîgehê jî derxîne û tê çaverêkirin ku xortê 16 salî bişînin cem xaltiya wî li bajarê Magdeburgê. Weke ku Saziya Penaberan ya Bayernê diyar kir, xortê kurd beriya destpêkirina serhildanên vê salê li Sûriyê bi rêya Îtalyayê hatibû Almanyayê. Li gor parêzer û Saziya Penaberan, tevlî ku paşveşandina xortê 16 salî niha hatiye rawestandin jî, lê metirsiya dersînorkirina wî hîn jî didome.

**Kuncika Yasaya Kar (Almanya)**

## Bidawîanîna Kar – Beşa 1ê

**1. Beyankirina bidawîanîna kar**

Beyankirina bidawîanîna kar daxwazek yekalî ye ku pêwîstî bi gihiştinê heye û daxwazek yasayî ye. Bi vê yekê tê xwestin ku di siberojê de dawî li hevkariyekê bê anîn. Divê ew beyanname ronî û daxwaza wê diyar be, wekî din jî divê ji wê beyannameya daxwaza bidawîanîna kar bi ronî diyar be. Pêwîst nake ku di beyannameyê de behsa peyva “bidawîanîna kar“ bê kirin, lê divê ji beyannameyê ronî bibe ku daxwaza bidawîna hevkariyê tê kirin.

**2. Bi nivîskî**

Li gor madeya § 623 BGB, pêwîst e daxwaza bidawîanîna kar bi nivîskî be. Yanî divê li gor § 126 I BGB nameya bidawîanîna kar ji aliyê kesê ku daxwazê diyar dike bê destnîşankirin, anjî bi pencemora wî kesî ku ji aliyê noterekî hatibe piştrastkirin

Nameya bidawîanîna kar bi rêya telegram anjî telefaksê têrî şertên qanûna § 126 I BGB nake. Di vir de destnîşan ji orîjînala wê tenê hatiye kopîkirin. Heman tişt ji bo kopiya nameya bidawîanîna kar jî derbasdar e. Herwiha e-mailek û SMS jî têrî şertên teknîkî yên qanûna § 623 BGB nakin. Şertbûna gihandina nameya bidawîanîna kar bi awayekî nivîskî gaveke giring e di warê ewlehiya yasayî de. Encama qanûnî ya pêkneanîna şertên teknîkî yên qanûna § 623 BGB, nerewatiya nameya bidawîanîna kar e. Ev nerewatî bêîtraz e. Tena rêya dimîne, ji nû ve diyarkirina daxwaza bidawîanîna kar li gor şertên derbasdar yên teknîkî ye.

**3. Gihandina “Nameya Bidawîanîna Kar“**

Daxwaza bidawîanîna kar dikeve meriyetê, dema ku nameya bidawîanîna kar li gor şertên qanûna § 130 BGB bighije kesê dijber. Ji bo gihandina daxwaza bidawîanîna kar bi awayê nivîskî di navbera kesên mewcûd de, têr dike ku nameya bidawîanîna kar bigheje destê kesê dijber, ji bo ku ji naveroka nameya bidawîanîna kar haydar bibe. Eger xwediyê kar di namedankek girtî de nameya bidawîanîna kar radestî karker bike û karker bi sedema ku xwediyê kar ti agahî derbarê naveroka nameyê de neda, nameyê li xwediyê kar vegerinê, daxwaza bidawîanîna kar weke gihiştî di nav kesên mewcûd de tê hesibandin. Wê demê karker wî mafî ji dest dide, ku di dozek siberojê de îtiraz bike ku ew ji daxwaza bidawîanîna kar di nameyê de ne haydar bû. Wekî din ne girîng e jî ku karker ji ber nezanîna ziman anjî xwendin û nivîsandinê nekarî nameyê bixwîne.

Di nav kesên ne hazir de, nameya bidawîanîna kar weke gihiştî tê hesibandin, dema ku bi rengekî wiha gihiştibe derdora wî, ku ew karibe bi awayekî asayî xwe ji naveroka nameyê haydar bike. Ev yek di gihandina nameyê bi qûtiya posteyê ya malê ve weke pêkhatî tê hesibandin, ji ber ku karker derbarê naveroka nameyê de haydar dibe. Daxwaza bidawîanîna kar dikeve meriyetê, dema ku derfeta akstrakt ya karker hebe ku ji naveroka nameya bidawîanîna kar haydar bibe. Daxwaza bidawîanîna kar weke gihiştî tê hesibandin, dema ku nameya bidawîanîna kar radestî kesekî di bin hikmê karker, mirovekî wî, anjî hevsera karker li ber derî bê kirin. Eger ji ber nebûna pûlê postê, name dereng anjî qet negihije, anjî kesê karker ji ber nebûna pûlê postê nameyê red bike, rîsk dibe para xwediyê kar.

Sîstema şandina nameyan bi rêya posteyê ya bi navê “Einschreiben“ bi du coreyan e: Einschreiben a normal (Einwurfeinschreiben) û ya bi destan radestkirin (Übergabeeinschreiben). Bi sîstema Einwurfeinschreiben name weke gihiştî tê hesibandin, dema ku name ji aliyê postegêr ve derbasî qutiya posteyê bê kirin. Bi sîstema Einwurfeinschreiben, name wê demê weke gihiştî destê karker tê hesibandin, dema ku name radestî karker bi xwe, anjî radestî kesekî ku li şûna wî xwedî mafê wergirtina nameyê be, bê kirin.

Eger postegêr li malê negihije karker û agahiyekê ji bo wergirtina nameyê têxe qutiya postê, name weke gihiştî nayê hesibandin. Karker herwiha sûcdar nayê dîtin, eger ew yekser neçe wergirtina nameyê, lê di dema ku ji aliyê posteyê ji bo wergirtina nameye hatiye diyarkirin de biçe wergirtina nameyê.

*Parêzer Oktay Uzun*
*SonnemannStr.3*
*60314 Frankfurt am Main*
*Tel.069/49 600 87*

# Ev jî Messiyê Kurdan e!

**Bawer Çem** Amed

Zarokê kurd Bayram Demîrbaş, mafê çûna Dibistana Lamasia Futbol a Barcelonayê bi dest xist. Xeyala herî mezin a Demîrbaş ew e ku di pêşerojê de forma Barcelonayê li xwe bike. Klûba Lamasia, di serî de Messi, heta niha gelek futbolîzên navdar derxistiye.

## Binesaziya herî baş Lamasia ye

Klûba ku hemû futbolîzên binesaziya Barcelonayê derdixe, di 3 salên dawî de ji aliyê FIFA'yê ve weke klûba herî baş hate hilbijartin. Xewn û xeyala herî mezin a bi milyonan zarokan ew e ku rojek di vê klûbê de bilîzin. Tîma Barcelonayê ku tîma herî baş e Herêma Xweser Katalanya Spanyayê ye, heta niha di serî de Messi gelek futbolîzên navdar li cîhanê daye naskirin. Katalanya, li cîhanê bi futbola herî baş a Barcelonayê tê naskirin. Yek ji zarokê kurd ê amedî Bayram Demîrbaş, mafê lîstina di vê klûbê de bi dest xist.

Futbolîzê stêrk ê kurd Bayram




Demîrbaş ku 14 salî ye û di pola 8'emîn a Dibistana Yuzuncuyilê de dixwîne, di 18-22ê tîrmehê de, li Stenbolê kete bijarteyên Dibistana Sporê û ji nava 18 futbolîzên herî baş de, yê herî serkeftî hate hilbijartin. Demîrbaş, wê ji vir û şûnde di binesaziya herî baş a futbolê de ders bibîne. Demîrbaş, diyar kir ku ew dixwaze weke Lionel Messi, Victor Valdes, Gerard Pique, Carles Puyol, Xavi Hernandez, Sergio Busquets, Pedro Rodriguez ve Bojan Krkic û antrenorê barcelonayê Pep Guardiola bibe futbolîzê herî baş û neteweya xwe temsîl bike.

Bayram Demîrbaş ku kurê karkerekî înşeatê ye, diyar kir ku ew ê bi taktîkên xwe yên serkeftî xwe li Barcelonayê îspat bike û wê hewl bide ku di tîmê de bimîne. Demîrbaş, wiha got: "Li gorî min, li wir binavkirina navê me jî serkeftinek e. Çimkî ez diçim tîma herî baş a cîhanê. Naxwazim zêde hêcan bikim. Ez ê li wê derê futbola herî baş bilîzim. Dawiya dawî de futbolîzên herî navdar jî însan in. Ya girîng performans e. Çi ji destê min bê, ez ê bikim. Bavê min karkerê înşeatê ye lê gelek caran betal e. Rewşa me ya aborî nebaş e. Herî zêde ji ber vê yê yekê dixwazim bibim futbolîz. Xeyala min a herî mezin lixwekirina formaya Barcelonayê ye."

Demîrbaş, destnîşan kir ku ew heyranê Cristiano Ronaldo ye û wiha berdewam kir: "Li Tirkiyeyê Diyarbakirsporê digrim, di tîmên cîhanê de jî Barcelonayê digrim. Ez din ava futbolîzan de herî zêde ji R. Madrîdê C. Ronaldo ji xwe re mînak digrim.

Hakemê Futbolê Îhsan Pamuk jî xwest ku zarokên Amedê di futbolê de qabîliyeta xwe nîşan bidin û ji bo serkeftineke baş pir bixebitin. Pamuk, da zanîn ku vexwendina Demîrbaş a bo Barcelonayê hem ji bo wan hem jî ji bo Amedê serkeftineke pir mezin e.




Wêne: Rûdaw

# Maçên Kupaya Almanya dîsa encamên surprîz derxistin



**Koln (Rûdaw)-** Ji bo Kupaya Almanya DFB Pokal, hefta borî rêzeyek maç hatin leyîstin û di van maçan de encamên gelek balkêş derketin ber çavan. Maçên tûra yekem di navbera 29ê tîrmehê û 1ê Tebaxê de hatin leyîstin.

Ji bo bi dest ve anîna Kupaya Almanya ligel tîmên ji lîgên 1.,2. û 3. tîmên ji lîgên herêman ku bi navê Regional Lîga tên binavkirin jî dikarin tevlî bibin. Maçên kupaya Almanya ne wek welatên din du caran, tenê carek tên leyîstin, tîma ku wenda bike ji pêşbirkên kupayê dûr dikeve. Di tûra yekemîn de maç di saheya tîma jêr de tê leyîstin.

Li gor encamên maçên hefteya borî Werder Bremen û Bayer Leverkusen ku gelek caran di Lîga Şampiyonan de leyîstine û encamên baş bidest xistine, li himberê tîmen ji lîgên jêr wenda kirin ji pêşbirkên kupayê derketin. Bayer Leverkusen vê sezonê wê ligel B.Dortmund û B.Munchenê di Lîga Şampiyonan de bileyîze.

| Encamên tûra yekem: | |
|---|---|
| 1. FC Saarbrucken – Erzgebirge Aue | 1:3 |
| Red Bull Leipzig – VfL Wolfsburg | 3:2 |
| Wehen Wiesbaden – VfB Stuttgart | 1:2 |
| VfL Osnabruck – 1860 München | 2:3 |
| Jahn Regensburg – Borussia Monchengladbach | 1:3 |
| RW Essen – Union Berlin | 4:3 |
| BFC Dynamo - 1. FC Kaiserslautern | 0:3 |
| Hallescher FC - Eintracht Frankfurt | 0:2 |
| 1. FC Heidenheim 1846 - Werder Bremen | 2:1 |
| Dynamo Dresden - Bayer Leverkusen | 4:3 |
| Eintracht Trier - St. Pauli | 2:1 |
| Arminia Bielefeld - 1. FC Nurnberg | 1:5 |
| Rot Weiss Ahlen - SC Paderborn | 0:10 |
| SV Babelsberg 03 - MSV Duisburg | 0:2 |
| VfB Oldenburg - Hamburger SV | 1:2 |
| Holstein Kiel - Energie Cottbus | 3:0 |
| SV 1916 Sandhausen - Borussia Dortmund | 0:3 |
| Kickers Emden - FSV Frankfurt | 1:5 |
| Hansa Rostock - VfL Bochum | 5:7 |
| Rot-Weiß Oberhausen - FC Augsburg | 1:2 |
| FC Oberneuland 1948 - Ingolstadt | 1:4 |
| SpVgg Unterhaching - SC Freiburg | 3:2 |
| Karlsruher SC - Alemannia Aachen | 3:1 |
| Eimsbuttel Hamburg - SpVgg Greuther Furth | 0:10 |
| Anker Wismar 1997 - Hannover 96 | 0:6 |
| ZFC Meuselwitz - Hertha BSC | 0:4 |
| Germania Windeck - 1899 Hoffenheim | 1:3 |
| Teningen - Schalke 04 | 1:11 |
| KSV Hessen Kassel - Fortuna Dusseldorf | 0:3 |
| SVN 1929 Zweibrucken - FSV Mainz | 1:2 |
| SC Wiedenbrück - 1. FC Köln | 0:3 |
| Eintracht Braunschweig - Bayern Munchen | 0:3 |

Alî Guler

# Rêwîtiyek li pey nemirintiyê: Şahmeran


Wêne: Rûdaw

Herdu birayên bi navê Metin-Kemal Kahraman lêgerîna xwe ya li Kurdistan û Dêrsimê ya li ser çîrok û destanên kurmancî û zazakî didomînin... Xebata wan a dawî destana Şahmeran e. Albuma ji muzîk, gotin û çîrokan pêk tê wek belgeyek dîrokî ye. Hunermend Kemal Kahraman jî dibêje armanca wan a vî albumê derxistina çîrok û destanên vê herêmê ser ruyê erdê ye.

Herdu bira, Metin û Kemal Kahraman, bi salan e di nav muzîka kurdî de bi zaravayê zazakî stran dibêjin. Metin û Kemal, li Dêrsimê wek bi derziyan erdê bikolin çand û hunera ku di bin axê de hatiye veşartin, derdixin û pêşkeşî me dikin. Vî karî xwe jî bi profesyonelî dikin. Birayên Kahraman, piştî albuma "Çevere Hazarû" niha jî bi destanek din derketin pêşberê guhdarvanên xwe. Ev album ne wek albumek normal e. Wek belge û destanê ye. Çîroka dîrokî ya Şahmeran bi awayek muzîkal û teatral bi hunera Metin-Kemal Kahkana hatiye amadekirin... Me jî li ser albuma Şahmeran bi Kemal Kahraman re gotûbêjek çêkir.

**Fikrê vî albumê ji kû derket? Hûn dikarin hinek behsa albuma destana Şahmeran bikin?**

Li ser navê Şahmeran di sala 1990î de pirtûkek bi zazakî hat nivîsandin û çapkirin. Di vir de çîroka Şahmeran a li herêma Dêrsimê tê gotin. Me jî ew sal dest bi lêkolîna li ser destana Şahmeran kir. Ev bîst sal in em li ser vî çîrokê lêkolîn dikin.

**Di vê şopandina Şahmeran de hûn rastî çi hatin? We tiştek balkêş dît yan na?**

Bêgûman armanc ne ji nûve şîrovekirina vî çîrokê bû... Armanca me fahmkirina vî destanê bû. Lê gava em ketin nav lêkolînek me dît ku versiyona zazakî ya Şahmeran ji yên din cuda ye û balkêştir e...

**Çend versiyonên destana Şahmeran hene?**

Şahmeran çîrokek kevin û dîrokî ye. Koka wî heya destana Gilgameş diçe. Hem ji bo dîroka kurdan hem jî ya mirovatiyê berhemek çandî ye. Herdu destan jî didin pey nemirinê. Gera lêgerîna nemirintiyê. Şahmeran hezar sal berê hatiye nivîsandin. Ev berhem wek nivîsa yekemîn e li ser Şahmeran hatiye amadekirin. Lê tenê di nav kurdan de bi dahan versiyonê wê yên devkî hene.

**Şahmeran di dîroka kurd û elewiyan de cîhek çawa digire?**

Şahmeran li vir mar e û pîroz e. Li herêma Dêrsimê li her malê heye. Jê re dibêjin milaket. Ev mar e. Ev tişt li gelek herêmên Kurdistanê jî heye. Alim û kesên rûspî bi mar kerametên xwe nîşan didin. Li Dêrsimê du ocaxên mezin hene. Yek ji wan Ocaxa Kureşan e. Di vîr de sembol şêr û mar e. Di Gilgameşê de jî mar û şêr heye. Mar demê û nemirintiyê temsîl dike.

**Armanca weya wî albumê çi ye?**

Armanca me ya vê albumê derxistina çand û hunera kurd, zaza û elewîtiyê ye. Li welatê me 30 sal in şer heye. Ev têkoşîna 30 salî, di warê çand, huner û ziman de gelek tişt derxistin holê. Çand û dîroka di bin axê de derket rûye erdê. Em jî wek hunermendên vî herêmê xwe di vî warê de berpirsyar dibînin. Çîroka Şahmeran jî mora xwe li hemû çandan xistiye. Zazakî jî zimanê me ye û divê ev zimanê kevin û dîrokî bê jiyandin. Ger û têkiliya me di vê çerçovê de ye.

## Mar di nava êzdî û elewiyan de pîroz e

**We di dema xebata albumê de çi zehmetî kişandin?**

Me got em 20 sal in lêkolîn dikin li ser Şahmeran. Lê di serî de armanca me ya albumê tune bû. Tenê me xwest em fêr bibin ka ev çîrok çawa ketiye zazakî û dîroka kurdan. Lê gava me lêkolîna xwe zêde kir me biryar girt ku em albumek Şahmeran wek muzîkal çêkin. Me di serî de li Dêrsim, Mêrdîn, Varto, rojhilat û başurê Kurdistan û gelek heremên din lêkolînek çêkir. Me gelek çavkanî dît û ew tomar kirin. Di albumê de ji herêma Mêrdînê kalêkî kurd bi kurmancî destana Şahmeran dibêje.

**Versiyona kurmancî û zazakî dişibin hev yan na?**

Versiyona Şahmeran ya di nav kurmancên misliman de û yên zaza û kurmancên elewî ji hev gelek cûda ne. Versiyona kurmancên misliman gelek di bin bandora olê de maye. Lê ya zazakî û kurmancên elewiyan gelek dişibin hev. Mar di nav elewiyan de çawa pîroz û teybet e di nav êzdiyan de jî wisa ye. Me hewlda em xwe bigihînin wan lê me nekarî. Di albumê de versiyona di nava êzdiyan de tê gotin, kêm ma.

> **Divê mirov Şahmeran li ser dikê bi leyîstika şanogerên profesyonel û muzîkalek xurt, temaşe bike. Em dixwazin di demên pêş de bi 4-5 konserên teatral Şahmeran li ser dikê pêşkêş bikin.**

**Çend kes di vî albumê xebitîn?**

10 kes di beşa muzîkalê de, 10 kes jî di beşa lêkolînê de cîh girtin.

**Lê di albumê de gotin derdikeve pêşiya muzîkê...**

Erê ev ceribandineke muzîkal e. Zêdetir gotin û çîrok heye. Xwezaya projeyê jî wisa ye. ji xwe ev hinek jî tiyatral e.

## Ji şîn û giriyên Dêrsimê albûmek nû

**Dema pêşiya me de ew ê wek tiyatral were ser dikê gelo?**

Ji xwe Şahmeran divê mirov li ser dikê temaşe bike. Bi şanogeren profesyonel û muzîkalek xurt. Hewldane me ji bo vê hene û dema pêşiya me de em dixwazin 4-5 konserên teatral Şahmeran li dar bixin.

**Metin-Kemal Kahraman salên dawî bala xwe kişandin ser projeyên wisa. Çima gelo?**

Armanca me destan û çîroken vi heremê derkevin holê. Min di serî de ji gotibû têkoşîna li bakur ya 30 salî ev tişt fêrî me kir; em kî ne, çi ne û ji kû dere tên? Li Dêrsimê nasname, çand û ziman ji bo me pirsgirêk e. Em wan ji xwe re dikin pirsgirêk. Loma van tiştan çê dikin. Lê di aliyê din de stran û melodiyên din jî hene. Em wan ji berdewam dikin.




**Ji bo albûmê eleqe çawa ye?**

Bêgûman ne wek albûmên normal in. Ev xebateke demdirêj e, hertim dimîne.

**Di dema pêş de proje hene yan na?**

Erê em dixwazin şîn û giriyên Dêrsimê yên siyasî di bin albûmek de berhev bikin. Di 100 salên dawî de tiştên ku li Dêrsimê qewimîne û girî û şînên li ser van hatine çêkirin... Di albûmê de jî 1938-37 bigre û heya girî û şîna li ser Mûnzûrê hatiye gotin, hene. Albûm di meha îlonê de bi dawî dibe û serê cotmehê de dertê piyasê.

### Em kî ne?

**Eger mirov bi kurtahî çîroka Şahmeran bide nasandin, Kemal Kahraman wê çi bêje?**

Şahmeran, gera li pey nemirintiyê ye. Pirsa em kî ne, em çi ne û em ji ku tên û em çawa bijîn e. Evîn çi ye? Mirov dikare van pirsan zêde bike. Lê bi kurtahî mirov dikare bêje felsefeya çîroka Şahmeran ev e. Lê gava ol derketin, bi teybetî jî ola îslamê, Şahmeran halek bi olî vergirt..

**Ev destan di hemû olan de heye?**

Erê di hemû olan de Şahmeran heye. Ew qas ketiya nav jiyana me. Mînak, ew marê sembola tipê jî Şahmeran e. Nêrînek jî heye dibêjin Şahmeran kûrê Loqman Hekîm e. Em bi xwe jî piştgirtiya vî nêrinê dikin. Ji xwe çîrok jî li ser vê hatiye sazkirin. Çîrok li dora xwe tê û diçe. Ew cihê lê tê destpekirin li wir jî bi dawî dibe.

Derbarê avakirina 300 bendavan Ercan Ayboga :

# Dixwazin xeta sînor bi bendavan dorpêç bikin



Eger bendav bi dawî bibe wê %80ê Heskeyfa 10 hezar salî di bin avê de bimîne

**Alan Ken** Mainz

Heskeyf, Dêrsim û gelek deverên dîrokî yên Kurdistanê bi projeyên dewleta Tirkiyeyê wê bikevin bin avê. Tirkiye bi van hewldana dixwaze herêmê di bin avê de bihêle û dîrok û şaristaniya kurdan wenda bike. Ji bilî komek cîwanan, Kurd ji hewldanên dewletê bêdeng in. Yek jî wan ciwanan Ercan Ayboga ye. Ayboga dibêje; tevgerên siyasî û saziyên kurd di vî warê de bêdeng dimînin.

Niha li Dêrsim, Heskeyf, Garzan, Mûş, Qers, Wan, Meletî, Colemerg, Şirnex û gelek deverên din ji 300 zêdetir bendav tên çêkirin. Gelek cîh û warên kurdan yên dîrokî di bin avê de diminin. Heskeyf û Dêrsim minakên herî girîng in. Li gor berdevkê saziya li dijî bendavên li Kurdistanê Ercan Ayboga, bi çêkirina van bendavan gelek kes jî maxdur dibin.

**Niha li Kurdistanê çend bendav hene û armanca avakirina wan çi ye?**

Li Kurdistanê bi hêzeke mezin û bi lezgînî niha bi sedan bendav tên ava kirin. Herkes tenê ew 5 bendavên li ser çemê Firatê dizane. Lê niha li Dêrsim, Garzan, Wan, Colemerg, Çewlik, Meleti, Qers, Mereş, Muş û gelek bajarên din zêdeyî 300 bendav tên çêkirin. Raya giştî wan zêde nizane. Herkes bêtir bendava Hesenkeyf û Dêrsimê dizane.

**Ji bo çi ewqas bendav çêdikin?**

Dibêjin em ji bo avdan û enerjiya elektrîkê bendavan çêdikin. Le rastî ne ev e. Dixwazin Kurdistan di bin avê de bimîne. Di cihê stratejîk de çêdikin ku ewlekariya wan were girtin. Em dikarin Colemerg û Şirnexê mînak bidin. Niha bi lez û bez li Colemergê 7, li Şirnexê jî 4 bendav çêdikin.

**Cîhê avdaniyê jî tune. Ji bo çi van bendavan li vir çêdikin?**

Tenê ji bo ewlekariyê û dijî gerillayên PKKê. Armanc ev e: xeta sînor bi bendavan dorpêç bikin.

**Li Heskeyfê rewş çawa ye?**

Li wir rewş ji bo me ne baş e. Me bi kampanyayek navnetewî di sala 2009ê de çêkirina bendava Heskeyfê dabû rawestandin. Gelek banke û şirketên ewropî xwe ji projeye vekişandibûn. Lê Tirkiyeyê dîsa hinek şîrketên nû dît û niha çêkirina bendavê berdewam dike. Ji bo bajarê Heskeyfa nû xebat û karê înşaatê berdewam e. Ez bawerim di nava du salên pêşiya me de ew cîh tê çêkirin. Wan esaran jî bi vî awayê wê ji wir bibin.

**Ew çawa çêdibe gelo?**

Heya niha tiştek di vî warê de nehatiye kirin. Dibêjin em wan peykera dibin cîhekî din. Lê ev ne mumkûn e. Di warê teknîkî de jî nabe. Li gor gotinên wan tenê 12 peykeran dibin. Lê çênabe, nikarin bibin. Hemû pispor jî di vî nêrinê de ne.

**Li heskeyfê çend peyker û stûnên dîrokî hene?**

Ji 300 peyker û perçeyan zêdetir e. Dewlet dibêje; "yên herî girîng ev 12 perçe ne. Eger em wan bikaribin xilas bikin bes e, yên din ne ewqas girîng in." Li gor îddîa wan %20ê Heskeyfê di bin avê de dimîne. Lê ew derew e.

**Rastî çi ye?**

Heskeyf ji sedî 80 di bin avê de dîmîne. Lê li vir propagandayek tê kirin. Dibêjin; 'em li vir parkan çêdikin, bajarek nû avadikin, herkes dibe xwediyê kar' lê ev ne rast e, tenê gotinên xapandinê ne. Eger ew bendav li wir were çêkirin gelek kes maxdur bibin û dîrokekî jî di bin avê de dimîne.

**Bendavên Dêrsimê di rewşeke çawa de ne?**

Li Dêrsimê heya niha 3 bendav qediyane. Înşata duheban jî berdewam dike. Lê ya herî mezin bendava navenda Dêrsimê û navçeya Ovacikê ye. Amadekariyên wan berdewame. Lê li dijî wan nerazîbûnek mezin jî heye. Ji ber wî dest pê nakin vê gavê.

**Li seranserê Kurdistanê nerazibûna gel heye yan na?**

Ne zêdebe jî heye. Lê di vir de tiştek din heye. Raya giştî ya kurd, ji bilî Heskeyfê û Dêrsimê ji bendavên din ne agahdar e. Kes nizane. Yên dizanîn jî ew kesên ku bendav di axa wan de çêdibe, ew in. Ew jî guh didin gotinên dewletê. Dewlet dibêje, "gava bendav were çêkirin, kar tê dîtin. Derfet çêdibe, em pere didin we, ji van deran herin. Ji xwe re li bajarên mezîn jiyanek nû avakin. Bila jiyana we û zarokê we xilas be."

**Xebatên we di kîjan merhelê de ne? Kurd eleqe nişan didin?**

Erê eleqeyek mezin heye, bêtir ji bo bendava Heskeyfe heye. Piştî kampanyaya çalakî û protestoyên me ew şirketên evropî xwe paşve kişandin. Jiber dîroka Heskeyfê ji qada navnetewî jî eleqeyek mezin hebû. Ji ewropayê gelek sazî û şexsiyetan alikariya me kirin. Protestoye me hêjî berdewame.

**Ev bes e gelo?**

Na. Me di qada navnetewî de gelek tişt kirin. Lê li welat û derûdora bendavan me tiştek zêde nekir. Em di wir de qels man. Bi vî awayê biçe em nikarin pêşî li bendavan bigrin; lewma pêwîst e em gelê li wir dijî tevlî çalakiyan bikin. Ew jî zehmet e, me hinek xebat kirin lê ne bes e.

**Li gor we tevgerên kurd yên siyasî rola xwe dileyîzin yan na?**

PKKê çend sal berê hinek daxwanî dan ji bo bendava Heskeyfê. Niha deng ji wan dernakeve. Lê em bêtir BDPê rexne dikin. Ew û saziyên heremê qels dimînin. Dibêjin, 'van rojan mirov tên girtin, şer heye em çawa bi Heskeyfê re eleqeder bibin?` Lewma em dixwazin rêxistinek nû damezirînin. Eger em vî rêxistinê bi serkeftî saz bikin wê demê gelek tişten baş çêbin.

**Biyografî**

**Ercan Ayboga**

Eslê xwe jî Dêrsimê ye û li Alanya hatiye dinyayê. Wî xwendina xwe di Zanîngeha Darmstadtê ya Teknîkê de beşa erdnîgariya avê xwend. Di nav xebata Yekitiya Xwendevanê Kurdistanê (YXK) de cîh girt. Gava çêkirina bendava Heskeyfê derket holê, ket nav xebatên li dijî bendavan. Piştî xwendina xwe Ayboga, di sala 2005ê de çû Amed û Batmanê niştecîh bû. Li wir rêvebiriya "Saziya Jiyankirina Heskeyfê" kir û li Ewropayê jî kampanyaya dijî bendavan da meşandin.



Wêne: Rûdaw

## "Mal û halê 80 hezar kesan têk diçe"

Financial Times a Amerîkî di Adara 2009ê de raporeke li ser bandorên xerab yên avakirina bendavekê ji aliyê Tirkiyeyê belav kir, rapora wan Ewropa hejand û di encamê de bû sedemê wê yekê ku Yekîtiya Ewropa ew milyar û 200 milyon euroyên ku soz dabû bide Tirkiyeyê ji bo avakirina bendavê, rabigire. Ew herdu rojnamevan Mary Helen Karltonoyl û Mega Garin bûn vêga bo beşdarîkirinê konfiranseke taybet li Herêma Kurdistanê ne.

Mary Helen Karltonoyl qala rapora xwe ji Rûdawê re kir û got: "Me çîroka avakirina bendavekê li ser çemê Dicle li Hesenkêf tê avakirin, hilbijart, daku ligel wêneyan raporeke rojnamevanî amade bikin."

Çendîn film û raporên Karltonoyl û Garin li ser cihên dîrokî li Misir, Îraq û Tirkiyeyê hene. Ligel dezgehên navdar weke Financial Times û BBC û New York Times kar dikin. Baregeha dezgeha wan li New Yorkê ye.

Mary Helen mebesta xwe ji amadekirina wê raporê ron kir û got: "Me xwest bandora avakirina wê bendavê li ser jiyana xelkê û aboriya wê navçeyê û cihên dîrokî pêşkêş bikin, herwiha bandora jîngehî ya wê bendavê û bandora wê li ser gelê kurd li wan navçeyan ron bikin."

Mega Garin qala bandora rapora xwe dike û dibêje: "Swêsra, Newzelanda û Australiya nêzîka milyar û 200 milyon euroyan dabîn kiribûn, Ewropa jî razî bûbû li serê, lê rapora me dengekî mezin veda û YE wan perên ku pêwîst bû bide Tirkiyeyê, ragirt."

Her çiqasî Tirkiye îdîa dike bendav tesîreke aborî ya baş li ser deverê dihêle, lê rojnamevan Mary Helen Karltonoyl dibêje: "Kêşe ew bû bendav bo gelê kurd pir xerab bû, xelkê navçeyê zerermend dibin. Hikûmeta Tirkiyeyê 10 xal bo alîkarîkirina xelkê diyar kirin, lê belê yek ji wan jî bicih nekir."

Mega Garin firehiya wan zereran texmîn dike ku bi sedemê wê bendavê digihîjin xelkên deverê û dibêje: "80 hezar kes mal û halê wan têk diçe, bi giştî 23 bendav in, 18 ji wan xilas bûn, yên ku mane hê jî metirsî ne û bi giştî ew bendav karesat in li ser jiyana xelkê wan navçeyan nemaze navçeyên kurdî. Ew bedav zererê digihîne şûnewar û cihên girîng û dîrokî, ji ber ku hê jî gelek cih hene li wir eşkere nebûne, li navçeya Zeugma kevintirîn gundê Romanî û giringtirîn şûnewarê sêramîkî hat dîtin."

Mary Helen Karltonoyl bêtir li ser dîroka wan şûnewaran radiweste û dibêje: "Temenê hinekan 10 hezar sal in, çendîn navçeyên girîng binav dibin ku buhaya wan bi pereyan nayên texmînkirin. Gelek vihên kevin yên Romanî li Hesenkêfê hene, kêşe ew e gelek cih li wan navçeyan hene ku hê jî nehatine dîtin, hikûmeta Tirkiyeyê alozîyan derdixe bo her şûnewarnasekî ku bixwaze li wan cihan kar bike."

## Berpirsê Pêwendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Tehranê, Nazim Omer:

# Belgeyên ku Îran derbarê PJAKê de pêşan dide rast in


Wênê: Rûdaw

**Rûdaw: Hatina te bo Kurdistanê, di vê dema ku topbaraneke germ li ser sînoran heye, dibe ku ji gelek kesan re cihê pirsiyarê be. Ji ber çi hatî?**

**Nazim Omer:** Ligel birêz serokê hikûmetê kom bûn û me behsa bombebarana ser sînor kir, daku li ber ronahiya bîr û baweriyên wan û şîretên serokê herêmê kar bikin, bi mebesta bidawîanîna van topbaranan û herwiha bi çareseriyeke siyasî ya di cih de bê fikirîn bona çareserkirina vê kêşeyan han.

**Ew çareseriya ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê pê difikire çî ye?**

Tiştê ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê pê difikire ew e ku divê hemû alî girêdayî yasa û qanunên navdewletî bin û rêz li sînorê welatên cînar bigirin. Lê gelo heya çiqasî em dikarin vê yekê bikin, gelo Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi hevkariya hikûmeta navendî dikare here jêr barê wan yasayên ku daniye ku nabe rê bide alîkî li nav xaka Îraqê rûne û xaka Îraqê bike bingeha êrîşkirina welatên cînar?

**Eger PJAK nehate jêr vî barî?**

Eger nehatin, weke Ereb dibêjin, ji her bûyerekê re peyvek heye. Em hêvî dikin PJAK û PKK tenê pêbendê dirûşmên xwe bin ku dirustbûna xwe di berjewendiya gelê Kurd de dibînin. Bila berjewendiya gelê Kurd pênase bikin, ka gelo berjewendiya PJAKê ye? Heke mebesta wan Kurd e, divê li bîra wan be ev destkefta Herêma Kurdistanê ji nav nebin. Hikûmeta Herêma Kurdistanê ku çendîn sal in li jêr zextan de ye, heya niha neçûye jêr barê wê yekê ku bibe hevkar ji bo dijayetîkirina wan.

**Hûn weke nûnertiya hikûmetê li Tehranê, peyameke taybet ya Îranê bi we re bû bo berpirsên Herêma Kurdistanê?**

Peyameke nû ligel me nebû, şopandina me hebû bo hemû wan peyam û rûniştin û civînên hevbeş yên berê ku me kirine bo vê kêşeyê. Meseleya hebûna hêzên PJAKê li ser hêla sînor di navbera me û Îranê de. Dibe ku pir caran xelk di dema aramiyê de red bikin ku hêzeke bi vî rengî hebe, lê gava hêzên Îranê dest bi tevgerekê dikin li navçeyên ku PJAK li wan hene, em şer û pevçûnan dibînin, ev nîşan dide ku tiştê tê gotin rast e, lewma ev kêşe ne tiştekî nû ye û weke Hikûmeta Herêma Kurdistanê gelek caran me tekezî li ser wê yekê kiriye ku tena çareserî bo vê pirsgirêkê çareseriya siyasî û dîplomatîk e û eger kêşe ji binî ve neyê çareserkirin ti fêdeya êrîşên serbazî nîne û her sal dubare dibe.

**Ji bo derketina ji vê kêşeyê pêwîstî bi însyatîfê ji aliyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê heye?**

Ev kêşeya ku vêga heye sê aliyên têkildar tê de hene: Îran, Herêma Kurdistanl û aliyê sêyem jî PJAK e ku bûye behaneya vê kêşeyê. Lewma bawer nakim bi tenê aliyek yan du aliyan kêşe bê çareserkirin, lê pêwîstî bi hersê aliyan heye. Ew peyama ku li ba Îranê hebû, di rûniştinên fermî de û niha jî, hergav ne yekalîker bû ku bêjin tenê şer. Ew e rastî ye ku Îran hest bi metirsiyekê dike, ji wê ya ku alîkî Îranê hatiye di nava Herêma Kurdistanê de baregehên wê hene û ji wan baregehan êrîşî navçeyên sînorî û kûrahiya xaka Îranê jî dike. Ev li gor wan belgeyên ku Îran nîşan dide belgeyên rast in. Bergiriya ku niha hêzên PJAKê li navçeyê pêşan didin îspat dike ku erê li wê navçeyê hene. Îran dibêje li gor yasayên navdewletî ne ji mafê ti welatekî ye xaka xwe li dijî cînarekî xwe bixe xizmeta hêzekê de, yanî ne ji mafê ti hêzê ye ji nava Îraqê êrîşî Îranê bike. Ew dibêjin pêwîst e Herêma Kurdistanê rê nede kesî sînorên wê derbas bike û derbasî nav xaka mwan bibe. Di vî alî de pêşniyara Îranê ya herî dawî ew e ku PJAK jî weke hêz û aliyên din, ku di nava Kurdistanê de bi awayekî eşkere hene, weke Komele û Partiya Demokrat, ew jî li wir rûnin. Diyar e li gor rêkeftineke pêşdem ku di navbera Herêma Kurdistanê û baskên cihê yên Komele û Partiya Demokrat de hatiye kirin, çalakiyên wan tenê çalakiyên siyasî dibin û ji baregehên xwe êrîşî Îranê nakin. Çêdibe PJAK jî pêbendî peymaneke bi vî rengî be.

**Hûn weke Hikûmeta Herêma Kurdistanê piştrast in ku PJAK ji wan sînoran ve êrîşî Îranê kiriye?**

Bi baweriya min çi PJAK û çi ew baskê Komele ku vêga li wê navçeyê ne û çi PKK, ew nikarin înkar bikin ku çalakî kirine. Ew dibêjin me çalakî li ser sînor nekirine, lê gava li Pawe û Kamyaran û Bokan xelk tên kuştin, jixwe ev jî çalakî ne. Baş e ji ber çi behsa aliyên din nayê kirin? Pir caran gilî li me hatine kirin û belge jî anîne ku weke mînak alîkî Demokrat yan Komele name nivîsandine û daxwaza pereyan kirine ji nava Mehabadê, lê Îran nehatiye li ser vê çalakiyê baregehên Demokrat li Koye topbaran bike.

**Pêşniyara Îranê ya herî dawî ew e ku PJAK jî weke Komele û Demokrat rûne**

**Çi PJAK û çi ew baskê Komele ku niha li wê navçeyê ne û çi jî PKK nikarin înkar bikin ku çalakî kirine**

**Pêdiviya çareseriya kêşeya PJAKê bi protokoleke ewlekarî ligel Îranê heye**

**Lê jixwe Îran baş dizane ew navçeyên ku PJAK li wane navçeyên asê ne û ne ku Herêma Kurdistanê lê Îran jî nikare wan kontrol bike?**

Bi rastî yên ku me gunehbar dikin, qaşo me PJAK û PKK hewandiye, xwe ji me baştir dibînin. PKK di zemanekî de li wê navçeyê bicih bûn ku serdema Baasê bû û Kurdistan hê ne azad bû. Em hemû jî dizanin PJAK berhema wan guherînan e ku PKKê piştî girtina Abdulla Ocalan pêk anîn. Wê çaxê gava PKKê dest ji stratejiya Kurdistana mezin berda, hat çend şax dirust kirin, yek bo Îran û yek bo Îraqê. Şaş dimînim ku hinek kes çavên xwe ji rastiyê digirin û qala Sûriyê nakin. Eger PKK ewqasî xemxwera pêşeroja gelê Kurd bû, ku beşek ji hêza wê ya serekî jî Kurdên Sûriyê ne, ji ber çi rêxistinek bi navê Kurdên Sûriyê dirust nekir.

Eşkere ye dixwazin bikevin nava lîstikekê ku ev tecrûbeya Kurdan li Îraqê bê lawazkirin û ev pêgeha wan ya ku heye ji dest bidin û kêşeyeke navxweyî jê re dirust bikin, piştî ku bêhêvîbûn ji derketina şerê navxwe di navbera PDK û YNKê de. Heq e ku PKK û PJAKê hest bi wê yekê bikin ku ev ezmûna Kurdan neyar û dijminên wê jî hene û nabe lîstikekê bikin ku di berjewendiya dijminên Kurdan de be. Pêwîstiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi dostaniya hemû aliyên ku li derdorê ne heye, bi armanca ku ezmûna niha heyî têk neçe. Ev ezmûn bi çi xerab dibe? Bi şerê navxwe û bi têkdana pêwendiya di navbera me û Îran û me û Tirkiyê de. Ev serxwebûna ku li vir heye tenê serxwebûneke îdarî ye û ne siyasî ye, siyaseta me ya darayî û bergirî û derve siyaseteke navendî ye ku ji Bexdayê derdikeve, lewma jî parastina sînorên herêmê ji berpirsiyartiya hikûmeta Bexda ye. Lê ew jî pêwîstî bi wê yekê heye ku van behaneyan nehêlin ku Îran fêdê ji wan dibîne bo êrîşkirina ser Herêma Kurdistanê. Bo çareseriya kêşeyeke bi vî rengî divê di pêşî de li dû rakirina wan sedeman de bigere ku dibin behane di destê wan aliyên ku pirsgirêkan derdixin de.

**Heftiya borî Xalîd Esedî yê parlementerê ser bi Îtîlafa Dewleta Yasa, ku Nûrî Malikî serokatiya wê dike, bo Rûdawê got ku pêdiviya çareseriya vê kêşeyê bi rêkeftineke êmnî ya sêalî di navbera Bexda, Tehran û Hewlêrê de heye. Dibe ku ev raya Hikûmeta Îraqê û Îranê be jî, egerê rêkeftineke bi vî rengî heye?**

Dibe ku Xalid Esedî bi van gotinan hinekî li ber dilê Herêma Kurdistanê jî dabe, ji ber ku em beşek in ji Îraqê û li gor destûr jî, weke min got, siyaseta bergirî û derve ser bi Bexda ye. Lê bi awayekî giştî nerîneke dirust e û bi baweriya min çareseriya vê kêşeyê bi protokolên ewlekarî tê kirin. Lê tiştê dikeve situyê me beşê serekî ye, ji ber ku PJAK li nava xaka Herêma Kurdistanê ye.

### Îran grûba Ensar El-Îslam vedihewîne?

**Qala wê yekê tê kirin ku Îran grûba Ensar El-Îslam vedihewîne, weke Wezîrê Pêşmerge got. Anjî wan tevlî êrîşan dikin, weke ku PJAK dibêje. Ev gotin rast in?**

PJAK qala Ensar El-Îslam dike ku beşek ji hêza wan Kurdên Îraqê ne, ew jî weke PJAK ku beşek ji hêza wê Kurdên Îranê ne. Eger giliyên wan hene ku Ensar El-Îslam li Îranê ye û çalakiyan dike û vê yekê xerab dibîne, ew jî dibêjin ew Kurdên Îranê ne û ji wî aliyê sînor êrîşî me dikin.

**Lê ev gotina Wezîrê Pêşmergeyan e jî?**

Na, bawer dikim nezelaliyek heye. Ne şert e kesê cilên kurdî lê be Kurd be û Ensar El-Îslam be. Dibe ku ew çekdar bin ku ser bi artêşa Îranê ne lê xelkê navçeyê ne. Em weke nûnertiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê heya vê saetê jî tiştekî berçav li ber destê me tune ku xelekekê biresimînin û bêjin Ensar El-Îslam li vir in.

## Şirketeke brîtanî jî ket bazara petrola Kurdistanê




*Rûdaw - Şirketa brîtanî ya petrolê Afren jî ket bazara petrolê ya Başûrê Kurdistanê. Li gor agahiyên ji malpera şirketa Afren, şirket bi nirxê 588 milyon dolarên amerîkî beş kirîne ku dike 1 milyar varîl çavkaniyê petrolê. Afren beşên xwe ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê û ji şirketa Komet Group kiriye û bîrên petrolê li Ain Sifri û li Berdereşê ne. Şirketa Afren heta niha tenê li welatên Afrîka û bi giranî jî li Nîjeriya aktîv e û bi vê kirîna beşan li Kurdistanê dixwaze bikeve bazara Başûrê Kurdistanê û Îraqê jî. Şirketa Afren dixwaze di pênc salên pêş de kapasîteya derxistina petrolê li Berdereşê hilde rojane 75.000 varîl.*

# Bexdadî bê gezoya Silêmaniyê venagerin

Bazara gezo li Herêma Kurdistanê roj bi roj berfirehtir dibe. Noiha tenê li Silêmaniyê 15 mal vî karî dikin.


Wêne: Rûdaw

Xewna Tofîq ew e ku rojekê gezoya Kurdistanê di bazarên cîhanê de bê firotin.


Wêne: Rûdaw

**Newzad Mehmûd** Silêmanî

Tena tişta ku tam û çêja xwe ya berê wenda nekiribe gezoya Silêmaniyê ye, ji ber ji ezmanan dibare. Lê qedrê gezoyê zêdetir di sewda û halpirsîna wan Ereb û biyaniyan de tê dîtin, ku bi sedên kîlometroyan ji deverên dûr tên, ji bo wê.

Dîroka gezofirotinê li Silêmaniyê, vedigere destpêka avabûna Silêmaniyê. Tofîqê Helawçî (64) bav û kalên wî heya mirin destên wan di nava helaw û gezoyê de bû, ew jî vêga her wisa ye: "Ji heyama qeralên Îraqê û heya îro, serkirde û serokekî Îraqê tune ku gezoya Silêmaniyê nexwaribe, gezo şêrîniyeke xwedayî ye, ji ezmanan dişîne."

Rojane li dikana Tofîqê Helawçî, Ereb, Amerîkî, Çînî û Bengladîşî daxwaza gezoyê dikin: "Lê zêdetir Ereb jê hez dikin, piştî wan jî Amerîkî, hemû biyanî ji gezoyê welatê me hez dikin."

Di şevên payîzê de, gezo dibare ser pelên dar û berên navçeyên zozanî weke Pênciwên, Şarbajêr û Hewraman û gundên nêzîkî Silêmaniyê. Gundnişîn wan pelên ku gezo li ser wan veniştiye kom dikin û tînin bajar û difiroşin helawçiyan. Hersbûnên xwezayê û bi ser de jî hişkesalî jî, gezo li ezmanan nagirin û ti payîzek bê gezo derbas nabe. Tofîqê Helawçî dibêje: "Berê li bajarê Silêmaniyê jî gez dibariya, lê ji ber toz û xweliyê weke gezoya çiyayan ne paqij û ciwan bû."

Heyder Kazim (48), her carê ji Besrayê rêya wî bikeve ser Silêmaniyê, bê gezo venagere: "Li Bexda û Besrayê min gez dabe her dostekî xwe, niha ew jî bûye aşiqê gezoyê, bi rastî ew nîmeteke buhiştê ye li ezmanê vî bajarî dibare."

Heyder bo yekemîn car di salên 80yî de bavê wî gezo jê re ji Silêmaniyê tîne, ew ji bilî gezoyê pir ji sicûqa Silêmaniyê jî hez dike: "Mirov ji wan têr naxwe, baştirîn diyarî ye mirov ligel xwe bibe."

Ji wê roja ku Îbrahîm Paşayê Baban dest bi avakirina Silêmaniyê kiriye, Silêmanî gezoya ezmanê xwe yê şîrîn dişîne derve. Bextiyarê Hecî Ehmedê Helawçî dibêje: "Ji wê rojê şûnde ti kesî nedaye pêşiya gezoya Silêmaniyê."

Bextiyar niha 45 salî ye û di rêvebirina dikana firotina gezoyê de mîratgirê bavê xwe ye. Wî zaroktî xwe di nav wî karî de derbas kiriye. Bavê wî yek ji kevintirîn helawçiyên Silêmaniyê ye. Binavû dengiya wan heya Hacî Hemlanê bapîrê wî jî dirêj dibe. Ew vêga rojane 150 kîlo gezo berhem tine. Ew dibêje: "Bavê min di dawiya salên 40î de dest pê kir, lê dîsa karê bapîrê min domand."

Weke helawçî behs dikin heya sala 1995ê li Silêmaniyê 3 malên helawçiyan hebûn, lê vêga 15 mal vî karê dikin: "Hê jî pê re nagihin xwesteka kiryaran cîbicîh bikin." Bextiyar dibêje di nav lîsteya kiryarên wan de, Ereb zêdetirîn kiryarên gezo ne: "Rojane 40-50 kg ên gezo difiroşin Ereban, niha li Silêmaniyê kes bi qasî Ereban gezoyê nakire. Di havînê de, heftane nêzîka tonek gezoyê Silêmaniyê diçe bo Bexda, Besra û bajarên din ên Îraqê."

Ti bajarekî Kurdistanê qasî Şeqlawe ji gezoya Silêmaniyê hez nake. Gezofiroşekî Şeqlawe dibêje: "Ji ber Ereban gezoya Silêmaniyê li Şeqlawe nakeve erdê." Huner Mihemed Nasir ev dema 23 sal in barana payîzî ya şêrîna ezmanê Silêmaniyê dibe Şeqlawe û wekîlê Bextiyarê helwafiroş e, dibêje: "Heftane em 500 sandoqên gezoya Silêmaniyê dibin Şeqlawe."

Her çiqasî ji ezmanê Şeqlawe jî gezo dibare, lê weke Huner dibêje: "Xelkê Şeqlawe zêdetir xwe bi çêkirina şerbeta hinaran, mişmiş û wan tiştan mijûl dikin, weke xelkê Silêmaniyê gezoyê nakin."

Bazara gezo roj li pey rojê deriyên xwe berfirehtir dike. Tofîq xewna wê rojê dibîne ku hikûmet kargeheke mezin a gezoyê deyne û li ser bê nivîsandin: "Berhemê welatê Kurdistanê" û bigihe tevahiya welatên cîhanê: "Lê em nikarin ji wê ya zêdetir berhem bînin da bişînin derve, xelk rojane dibin Ewrûpa bo dost û nasên xwe."

### Tofîqê Helawçî gezoyê datîne ser maseya civîna pênc alî

Tofîq û Bextiyar bi arambûna rewşa siyasî ya Herêma Kurdistanê kêfxweş in, nemaze jî li Silêmaniyê. Herwiha bi egera rûniştina aliyên nakokbar dilxweş in, lewma dixwazin ser maseya rûniştina pênc alî bi sicûq û gezoyê tije bikin: "Xwedê bike ew rûnin, em ê bi gezoyê devê wan şêrîn bikin.

Termê Çiro û Rêbaz di serşoka wan de hat dîtin

# “Sedem nemêraniya zava bû”

▶20 roj piştî daweta wan, laşê herduyan li mal hat dîtin.

▶Polîsê Kerkûkê lêkolîn kir û li gor rapora otopsiyê Çiro (bûk) hêjî keç e.



**Leyad Qeredaxî**
**Sinûr Mecîd** Kerkûk

Di nava serşoka mala wan de, polîsên Kerkûkê termê bûk û zavayekî nû kuştî dîtin. Bûyerê polîs bi germî kişandine nava lêkolînan û çaverêya rapora dadweriya pizîşkî tê dikin, da ku bê zanîn gelo rast e sedema mirina herdu hezkiriyan ew e ku xort nekariya bibe zava.

Rêbaz N. H. (26) û Çiro (20) rûniştvanên Kerkûkê ne, dema çend salan bû pêwendiya wan a evînê hebû. Roja 7ê tîrmeha borî daweta wan hat kirin, lê piştî 20 rojan ji daweta wan û di heyva hingivînê de, polîsan cesedê herdu kesan di serşoka mala wan de dîtin. Kesûkarên herdu aliyan ne amade bûn derbarê vê bûyerê biaxivin, lê keçeke bi navê Ş.F., ku hevaleke nêzîk ya herduyan bû, dibêje “Heftiyekê beriya vê bûyerê min herdu dîtin û bi wan re axivîm. Çiro got, tiştek heye nikarim ji te veşêrim.” Weke Ş.F. behs dike, Çiro jê re gotiye “Heya niha Rêbaz nikariye bibe zava û herdem qehirî ye û pir dilteng e.” Ş.F. dibêje ‘min şîret li wan kir ku herin cem pizîşk’, lê Çiro jê re gotiye ‘Ewqasî ji Rêbaz hez dikim, eger heya 15 salên din jî nikaribe bibe zava, amade me ligel wî bijîm û bi kesî din re nezewicim.’ Tena kêşeya jiyana wan ev bû, bawer nakim tiştekî din hebe.”

### Çiro dixwest keçeka wê çêbibe

N. E. hevaleke din a Çiro ye, şaş mabû bi wê têkiliya evînê ya di navbera Rêbaz û Çiro de, dibêje: “Pêşî gelek kes dihatin daxwaza Çiro, her car digot eger ez û Rêbaz negihin hev, em ê xwe bikujin.” N.E. herwiha got: “Xewna Çiro ew bû ku keçeke wê çêbibe.”

Herdu term bi mebesta lêkolînê bo dadweriya pizîşkî ya Kerkûkê hatin şandin û ew çeka ku di nava serşokê de bû ji bo lêkolînê li cem polîsan e. Rêveberê Polîsên Qeza û Nahiyên Kerkûkê, Komîser Serhed Qadir, ku bi xwe çû cihê bûyerê, dibêje: “Diya keçikê bi guman e ku kesekî din ew kuştibin û doz li dijî birayên Rêbaz vekiriye, lewma em dixwazin test bikin daku bizanin destê kê gihiştiye çekê. Di nava serşokê de hatine kuştin û şûşeya pencereyê jî şikestiye. Lê yek ji sedemên ku di lêkolînê de ketiye destê me ew e ku, behsa wê yekê dike qaşo ji ber wê yekê xwe kuştine ku xort nekariye bibe zava.” Bi baweriya Serhed, rapora dadweriya pizîşkî vê yekê yekalî dike ka gelo mesele nebûna zavatiya xort bû yan tiştekî din e: “Termê keçê li ba pizîşkiya dadwerî ye, gava encam bigihîjin me, em ê lêkolînê bi dawî bînin.”

### Li gor raporê Çiro hêjî keç e

Ş.E. xizmekî Rêbaz e û dibêje: “Ne Çiro û ne Rêbaz behsa vê kêşeyê li cem malên xwe nekirine. Herwiha gava dihatin dawetkirin jî, xwe wisa pêşan nedidan ku kêşeyeke wan a wisa heye. Çiro keçeke pir baş bû, piştî zewaca wan jî pêwendiya wan a evînê zêdetir bû.” Lê S.E. ku ew jî xizmê Rêbaz e, ji Rûdawê re ragehand ku roja 31ê tîrmehê rapora pizîşkî ya dosya Rêbaz û Çiro derketiye: “Derketiye ku Çiro hêjî keç e.”



## AIDSê 4 hevwelatiyên Kurdistanê kuştin

**Hewlêr (Rûdaw) –** Berdevkê Wezareta Tendirustî ji Rûdawê re ragehand ku hejmara hilgirên virusa AIDSê li Herêma Kurdistanê gihaye 15 kesan, du ji hilgirên vê virusê bi rêya sekskirinê nexweş bûne, ku yek ji wan jin e û bi rêya mêrê xwe nexweş ketiye.

Li gor amara Wezareta Tendirustî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê, heya niha 90 rewşên ADISê li Herêma Kurdistanê hatine tomarkirin, ku 71 kes ji wan biyanî ne û 19 Kurd in (14 mêr, 5 jin) ji ber bandora virusê jî heya niha 4 nexweş (2 li Silêmaniyê, 1 li Hewlêrê û 1 li Dihokê) mirine. 71 kesên biyanî jî bo welatên xwe hatine şandin.

Berdevkê Wezareta Tendirustî Dr. Xalîs Qadir bo Rûdawê ron kir ku yên Kurdistanê, niha 8 kes ji wan li Hewlêrê, 6 li Silêmaniyê û yek jî li Dihokê dijîn: “Tevahiya hilgirên virusê di bin çavnêriya parastina tendirustî de ne, mehane yan hersê mehan carekê li gor rêjeya bandora virusê test jî wan re tên çêkirin.”

Derbarê temen û rewşa malbatî ya wan kesên ku li Kurdistanê hilgirên virusê ne, navbirî eşkere kir ku temenê wan di navbera 30-45 salan de ye, tenê yek ji wan temenê wî 24 sal in û yek jî 52 salî ye: “Nûtirîn hilgirê virusê berî du mehan li Hewlêrê hat tomarkirin, ew jî ciwanekî 24 salî ye, em guman dikin bi riya seksê virusê han hilgirtibe.”

Dr. Xalîs Qadir çendîn sedeman li pişt zêdebûna hejmara hilgirên virusê li Herêma Kurdistanê dibîne weke: Zêdebûna diyardeya seksa ne rewa, hatina karkerên biyanî, geştkirina hevwelatiyan bo derve, hatina geştyar û bazirganan bo Kurdistanê, vegera Kurdên li derve, bikaranîna madeyên hişbir û belavbûna nexweşiyê li welatên derdorê.

Li gor amara Rêxistina Tendirustî ya Cîhanî WHO hejmara hilgirên virusa HIV li cîhanê gihiştiye zêdeyî 33 milyon kesan, ku 2.5 milyon zarok bi riya diyên wan rastî virusê hatine, herwiha 2/3 nexweşan jî li Efrîqya ne. Rojane jî 7 hezar kes radihêjin vê virusê, salane jî zêdeyî 2 milyon kesan bi riya vê virusê dimirin. Heya niha vê virusê zêdeyî 37 milyon kesan li cîhanê kuştine.

# Qendîl wê Îranê jî bihejîne!



**Kawe Emîn**

Tirkiye û Îran bi tenê û bi hev re jî, piştî rûxandina rejîma Baasê li Îraqê, bombebarankirina Başûrê Kurdistanê xistine nava rojeva xwe ya siyasî û leşkerî û heta niha bi dehan Kurd bûne qurbanî. Ew dewlet tevî ku PKK û PJAK`ê dikin hêncet jî, lê di rastî de armanca wan hemû Kurd in û ji wan re ne girîng e ka Kurdên kîjan herêmê tên kuştin, ji ber ku di nêrîna wan dagîrkeran de tenê yek Kurd heye, ew jî "Kurdê xerab"e, vêca anîna van hemû şêr û rûviyan bo nava rojnameyan û ev şîrovekirin, xweşirînkirin a bêtal, analîze û hêncetgirtin, hemû axaftinên tazî ne û mîna helbestvan dibêje: axaftin naçe nava bêrîkê.

Tiştê seyr ew e ku peyivdarê Balyozxaneya Amerîka di Rûdawê de behsa wê yekê dike ku divê "serweriya xaka Îraqê" ji aliyê cîranên wê bê parastin, ev gotin jî di demekê de tê kirin ku ev nêzîkî heşt sal in Amerîka di Îraqê de desthilatdar e û ji bilî ku nekariye wê "serweriyê" biparêze, Îran bi kêfa xwe li Bexda tevdigere û bi şêweyekî berdewam jî sinorên Başûrê Kurdistanê topbaran dike, ji xwe em behsa Tirkiyê nakin ku hevpeymana Amerîka ye. Niha nêzîkî wê lîstika (Tom û Jery) biqede, Jery bi kêfa xwe Tom tîne û dibe. Îran dixwaze ji Amerîka re bibêje ku hûn li vir bin yan na, em ê polîtîkaya xwe bidomînin. Polîtîkaya ku Îran dijî Kurdan dimeşîne, bêyî pirs û nêrîna Sûriyê, Tirkiye û hevpeymanên xwe yên li Îraqê nekiriye û nake. Loma Îraqê heta niha di warê praktîkê de tiştekî zêde nekiriye, ji bilî derxistina protestokirine şermîn ji aliyê Wezîrê Derve yê Îraqê ku ew jî Kurd e. Yan pêwîst ew e ku Îraqê niha ev pirs gihandibaye Civata Asayişa Navnetewî li Neteweyên Yekgirtî, ji xwe welatên misilman jî ti dengê wan nayê, tu dibêjî qey Kurd kafir in.

Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî nerazîbûna xwe tenê bi şêweyê dilgiraniyê derdixe. Bi rastî nabe bersiva te bo dewleteke "cîran" ku xelk û welatê te topbaran dike, bi wê şêweyê be ku bibêjî ez dilgiran im. Bila bi kêmanî Nûnertiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji Tehranê bihata vekişandin bo Kurdistanê û herwiha qonsolxaneya Îranê jî şandiban Tehranê. Eger bi şêweyekî eşkere jî nebe, wan dikarî xopîşandanên girseyî li bajarên Kurdistanê organîze bikin, manê partiyek tune di vî welatî de ku bi dehan û sedan saziyên wê yên "sivîl" nebin! Lê çima opozisyonê xwe bêdeng kiriye, tevî ku ew her roj gefa sazkirina xwepîşandanan dijî Hikûmeta Herêma Kurdistanê dikin? Yan Hacî Bîlal ê Komela Îslamî hêncetan ji Îranê re tîne û dibêje ku Îranê ji wan re gotiye ku ew ji bo encamdana van operasyonan digel PDK`ê û YNK`ê li hevhatiye.

**Nexweşiya Îran û Tirkiyeyê hebûna Kurdan e**

Baş e çima melayê mizgefteke vê Kurdistanê, xutbeya nimêja înê bo van destdirêjiyên Îranê terxan nekir? Lê di xwepîşandanên Silemaniyê de, bi dehan mela diqîriyan ku di sed salên de borî cîhadeke wisa pêknehatiye, te digot qey wan hingiv di quqila darê de dîtine. Herwiha çima fîlozof û rewşenbîr bersivê nadin? Tevî ku ew ji bo xelk Misr û Tûnisê amade bûn xwe û feqiyên xwe jî bikin qurban.

Vaye "dostekî" kurdan jî Wladamir Van Welgenberg şêwiriya me dike ku "li şûna hevrikîkirina Îranê û daxwaza rawestandina topbaranan, baştir em gundên ser sînor veguhêzin." Tu dibêjî qey Kurdan welatê xelkên din dagîrkiriye. Diyar e ew kerem dike vê gotina ji me re dibêje, ji ber ku piştî lihevhatina Cezayirê ji bo çolkirina herdu aliyên sînorên Kurdistanê peymaneke Îran û Îraqê hebû. Na kake na, ma kî heye welatê xwe bi destê xwe veguhêze? Gelo dema Almanan Holanda dagîrkir, xelkê Hollanda Naziyên Alman gulbaran kirin? Nexêr, rast e hollandî piştî pênc rojan xwe dan dest, lê ji bo bersînggirtina Naziyan rêxistineke nehênî avakirin û her tiştê ji destê wan hat xemsarî nekirin.

Baş e eger sînor bi sedema PJAK`ê bên topbarankirin, lê ma xelkê Xaneqîn PJAK in da ava çemê Elwen jê qutbikin, herwiha planeke wan heye ku çemê Sîrwan jî bi tevahî zuha bikin, ango nexweşiya Îran û Tirkiyê hebûna Kurdan e, lê ne tiştekî din. Loma ev şerê dagîrkeriyê ye û himberrawestana PJAK`ê jî mafekî rewa yê gelê Kurd e, loma divê piştevaniya gerîllayên Kurd bê kirin, Qendîl carekê Bexda û carekê jî Tirkiye hejand, mumkûn e vê carê Tehranê jî bihejîne.

# Jin, bila jin be!



**Hekîm Kakeweys**

Min wêneyê keçeke kurd a çekdar û şehîdketî dît, sîng û memikên wê tazî bûn û çekdarekî dagîrker ku berê wî li kamerayê bû, bi şanazîve digirnijî, wî pirça şehîda kurd dikişand û serê wê ji erdê radikir ji bo ku ji bilî sîng û memikên wê, herwiha serûsîmayê wê jî bê dîtin û naskirin û urfa kurdan jî kesûkarên wê biêşîne! Temaşekirina sîng û memikên keça kurd a şehîdketî, di yasaya dagîrker de, ne tiştekî heram e!

Nêratiya mêran himber wê keçê şermezar dibe. Hesta nêrîniya asayî ya zilamê kurd divê wisa be ku wê keçê weke xûşk yan keça xwe bibîne. Ew keç ji bo parastina kerametî zilam xwe kiriye qurban, loma sînga wê jî hatiye tazî kirin. Lê dîsa jî xîreta jinîtiya zilamên kurdan nalive û nalive.

Zilamê kurd di demekê de ku behsa mafê jinê dike, jin parastina kerameta şikestî ya zilam dike. Sîng û memikên jina kurd perjanê şermezariyê ye di rûyê zilamê herî nêrîn de, lê dîsa jî zilam rûdinê û yasaya sînorê tevgerê ji jinê re destnîşan dike:

Li gor yasaya fîlozofiya beriya Yûnanê, jin nabe çekdar be! Nabe parastina şerefa hemû şerefan bike ku ew jî nîştîman e. Nabe û nabe û divê û divê .. û mumkûn e û nemumkûn e, li ser serê jina kurd de dibarin û carna bi dest û çavên girêdayî, bi zorê dikin kerasta ser masa zilam û carna jî bi zorê biryaran li ser didin ku zilam be û mîna zilaman xwe teslîm bike!

Jinên ku dixwazin li gor dilovaniya zilaman xwedî parêzvandar û paredar bin, herwiha pêşketin, post û kursiyên jê re bên dayîn, nabe bibin tiştek ji kerestekî nerm û şil. Lê eger ew jin dilovaniya mêran bin gor bikin, ew bi xwe weke jin bên meydanê, sînga xwe ji nîştîman re bikin mertal û mîna hinek bêkar û sivikan xwe nekin tam bo şevên sorên wan kesên ku hertim danûstançî, qaçaxçî û bazirganên xak û xwînê ne, wisa bi sînga tazî, wê bibin cewherê taca serê her tiştê ku ji Kurdan re pîroz e. Ew sîng û memikên ku nîşanî kameraya îslama dagîrkerê welatê me tê dayîn, dikeve xaneya exlaqbilindiya keça kurd û li kêleka wê wêneyê tê danîn ku leşkerekî dagîrker mûyê simbêla Simkoyê Şikak dikşîne. Ew wêne serwerî ye ji neteweyekê re ku keçên wan ên wiha hebin û bi hezaran taziyên bazara xweşîfiroşiya erzan, eniya wê ya hertim bilind û pîroz, gemarî nakin û nagihin qîmeta daveke pirça wê ku bi bayê re diherike.

**Keçeke kurd a şehîd, tazî di destên çekdarekî dagîrker de, kî şermê dike?**

Bila nêrên desthilatdar bela xwe ji jinan vekin da li ser jinatî û merdatiya xwe bimînin û cîhana wan jî nexin nava xiyanet, sîxorî û dûvelankiyê. Hemû nêrên kurd himber dagîrkirina Kerkûkê eger xesandî jî nebe, wî bi xwe xwe xesandiye û zincîreke bi navê sedûçil xistiye dest û piyên nêr û mêyên kurdan, lê jineke kurd li saziyeke hikûmî ya Kerkûkê, dema jê re dibêjin "biryara Kurdistanê li vir nameşe." Ew kaxetan li nav çavên fermanberî dide û li ser wî diqîre "vir ne Erebistan e, Kurdistan e!"

Gelî şêre dayik, şêre xûşk û şêre keçên bi cesaretên Kurdan! Ne tenê mêr, lê mêranî jî li himber we dilerize û dikeve ser çokê! Hûn ên bi cesaret, çi bi rista sêdarêve bin yan di nava çeperê de di nava xwînê de mabin yan di zîndanan de destdirêjî li wê bê kirin. Hûn ew Amazoniyên yunanî yên beriya dîrokê ne ku memikên xwe yên rastê dibirîn û disotandin, ji bo ku di dema stêrikgirtin û segvaniya tîravêtinê de nebin astengî! Sembola we ew Leyla ye ku nêrê kurd xeber li ser da û gihand darê sêdarê.

Min wêneyê keçeke kurd a ciltarî di nava çiya û newalan de dît ku çavê xwe li stêrka çekê xwe girtibû. Ez nizanim çawa melayên me fetwaya kevirbarandina wê dernakin bi hênceta ku çavê xwe berdaye nêrekî nava çeperê dijmin! Çawa dibe keça kurd çavê bineqîne? Mafê wê heye mîna sêyemîn û çaremîn di xizmeta cenabê zilamî de be û mîna wî çavê xwe li derbaskirina sînorê kerameta kurdan bineqîne, ma ti tiştekî me maye ku nehatibe derbas kirin heta em xema sînoran hilgirin?

Melayên kurd, mixabin fetwa cîhadê bo dagîrkirina nîştîmanê xwe nadin, lê bo çavniqandina keçeke kurd, eger dimirin û şer de jî be û evîndara xakê be, wê mîna gijlok û baranê fetwayan li ser bibarînin. Herwiha banga "hey elalcîhad- berbi cîhadê herin" bo netebayî û xwetêkbirinê dikin, lê ji bo tazîkirina sîng û memikê keçeke kurd a şehîdketî û derbaskirina sînorê kerameta hemû Kurdan, cîhadê mîna pezê destê kafiran, mirar dikin.

Bila siyasetmedar destkariya îradeya jina kurd nekin, ez hêvîdar im ku jina kurd nekeve davê xefika desthilat û paredaran. Ez hêvîdar im ku jin her jin be û nebe zilam!

## Ajotina bisiklêtan hêza sekskirinê zêde dike

Tevî ku niha hinek çareseriyên mîna hebên Viagrayê zilam ji lawaziya seksî rizgar kirine jî, lê çareseriya bi heban kêrî wan mêrên ku nexweşiya dil bi wan re heye nayê û wan rastî pirsgirêkan tîne.
Bêyî ku em behsa wê yekê bikin ka Viagra bo kê baş e û kê na, em ê behsa lêkolînekê bikin ku li ser wan zilamên ku hêza wan a seksî kêm e hatiye encamdayîn.
Lêkolîn li ser ajotina herdu corên bisiklêtê hatiye encamdayîn, ango bisiklêta rawestiyayî (yên nava xanî û fîtnesê de) herwiha bisiklêta livok. Tevî ku sûdê vê sporê bo tevaya laş heye, lê sûdeke wê ya berçav bo wan kesan heye ku rastî lawaziya seksî hatine. Ew lêkolîn bi şêweyekî praktîkî li ser 60 zilaman hatiye pêkanîn ku temenê wan 57 sal bû û nexweşiya domdirêj a dilî bi wan re hebû, lê rewşa wan bicih bû û nîvê wan madeya "Nîtrat" weke çareseriya lawaziya seksî bi kar dianîn. 60 zilam li ser du grûban hatin dabeşkirin û komeke wan spora bisiklêtê kirin. Ajotina bisiklêtê di rojê de du demjimêran û di heftiyê de sê rojan û temamî heşt heftiyan dom kir.
Piştî pirsyarkirin û ceribandinê, derket holê ku ew kesên spora bisiklêtê kirine hêza wan zêde bûye û sedema wê jî vedigere bo bilindbûna gaza oksîjenê di laşê wan de, bi rêjeya ji sedî 18. Bi vê şêweyê rewşa damarên xwînê berbi başiyê çûye, herwiha çalakiyên sporê alîkariya guhertinên nava poşê wan şaneyan kiriye ku dîwarên damarên xwînê jê tên avakirin. Ev jî tê wateya dewlemendbûna xwînê û zêdebûna îmkanên wê bo gihiştina hemû beşên laşê mirov, ku çok jî yek ji wan e.

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Rehetkirin (bi taybet ji bo hestîyên şikestî tê bikaranîn) – Kesê ku goşt difroşe, goştfiroş. 3- Rojek – Program, rêbaz – Şên, geş. 3- Hejmarek – Zehmetî, rêlibergirtin, tengasî. 4- ...De Janeîro -paytextê Brezîlyayê- (berepaş) – Dîrokî, qehremanîyên dîrokî (berepaş) – Kok, bingeh, dayik. 5- Wezîfe, kar – Vajayî, dijî – Na, nabe. 6- Haydê, yalla, rabe – Diravî, ekonomî, îktîsadî. 7- Deng, stran, qêrîn – Navekî jinan. 8- Asayîş, sebir, xweşî – Mezel, di xanî de beşek. 9- Dibistana bilind, beşek zanîngehê – Notayek (berepaş). 10- Pîs, bê şexsîyet, namerd – Navekî jinan.

**Serejêr:** 1- Kesê ku canê xwe feda dike, cangorî – Agir, heya, namûs. 2- Hêwan, balkon. 3- Fêkîyek – Kîn, kîndar. 4- Insanî, ruhî – Serbestî, rizgarî. 5- Kesên ji Erebistanê – Zebeş, petîx û xiyar lê dikevin (berepaş). 6- Bi Erebî beşer, kole, xulam – Cî û rêya mîzê (berepaş). 7- Nabe, na, no – Navekî jinan – Kar, xebat, emel. 8- Bi Soranî "şand, bi rê kir" (berepaş) – Roja ku em tê de ne, ne doh û ne sibê. 9- Mirov, beşer – Pêxemberê yekem. 10- Betilîn, ji halde ketin (berepaş) – Belê, qebûlkirin. 11- Bi Swêdî hejmara pênc (berepaş). 12- Hema, çawa be, ji bo vê. 14- Navekî zilaman. 15- Vexwarinek serekî. 16- Per, çeng, mil, şax.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | | ■ | | | | | |
| 2 | | ■ | | | ■ | | | | | | | | ■ | | | |
| 3 | | | | | | | ■ | | | | | | | | ■ | |
| 4 | | ■ | | | | ■ | | | | | | | ■ | | | |
| 5 | | | | ■ | | | | ■ | | | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | |
| 7 | | | | | ■ | | | | | ■ | | | | | | |
| 8 | ■ | | | | | | | | | | | | | | | |
| 9 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |

**Bersivên hejmara 106**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | R | E | W | Ş | E | N | B | E | D | I | R | X | A | N | ■ | B |
| 2 | E | L | E | W | L | E | W | ■ | R | ■ | A | R | Y | A | N | A |
| 3 | M | Î | Z | E | ■ | X | E | S | A | N | D | I | N | ■ | Y | A |
| 4 | A | Z | I | R | A | ■ | Ş | Î | N | ■ | A | N | A | N | A | S |
| 5 | N | A | N | ■ | Z | A | ■ | R | ■ | Z | | | | | | |
| 6 | D | ■ | A | Y | A | ■ | K | ■ | N | A | | | | | | |
| 7 | I | ■ | N | ■ | D | R | E | M | A | N | | | | | | |
| 8 | ■ | Z | Ê | D | E | K | I | R | I | N | | | | | | |
| 9 | K | I | R | I | Z | Î | ■ | Û | R | ■ | | | | | | |
| 10 | K | O | N | ■ | R | A | Z | A | Y | Î | | | | | | |

# Tîrêjen tavê mirov zû kal dikin

Dr. Mesud Mamedî *

Her çiqas mirov vîtamîna D ji germahiya tavê digrin jî, lê pirmayîna li ber tavê dibe sedema zû pîrbûna mirovan. Li ser vê mijarê bijîşk destnîşan dikin ku mirovên ku dixwazin ciwan bimînin divê zêde li ber tavê nemînin.

**Ji ber çi ew kesên pir li ber tavê dimînin, pîr xûya dikin?**

**Dr. Mesud Mamedî:** Wextê em li ser başiyên tavê radiwestin, pêwîst e em bahsa zerarên pirmayîna li ber tîrêjên rojê jî bikin. Li vir ez ê li ser mijara çima ew mirovên ku pir li ber tîrêjên rojê dimînin zû kal dibin, rawestim. Tava zêdê çerm pir zû kal dike; bi taybetî ez ji wan jinên ku xwe li bin tîrêjên rojê pir dihêlin re dibêjim, ku ew ê pir zû pîr bibin. Di nava tîrêjên rojê de ultravîolet heye ku A û B ne. B, rengê çerm tarî dike yanî mirov bi wan tîrêjan esmer û heta berbi reşbûnê ve diçin. Lê A çermê mirovan him xirabtir dike û him jî pîr dike. Ji bo wê jî pêşniyara min bi taybetî ji jinan re ye ku xwe ji tavê dûr bixin. Kesên ku gelek diçin ber tavê piştî temenê wan gihişt 40 -45 salan gelek pîr xûya dikin. Çermê wan li gor temenê wan 10 salan pîrtir xûya dike. Her çiqas ew postê ber rojê qalind û paqij bibe jî lê mirov zû jî pîr dike. Ew pîkmendên bin çerm ku em jê re dibêjin melanîn, zêdetir çêdibe, ji bo wê çerm tarî dibe. Hinekî çerm paqij dike û vîtamîn D jî çêdibe. Lê wek min got kal û pîrîtiyê jî bi xwe re tîne. Ji bo wê divê mirov pir zêde li ber wan tîrêjan xwe neşewitîne, hertişt li gor ûsûla xwe bimîne ji tendirustiya mirov re herî baş e.

**Pêşniyara min bi taybet ji jinan re ew e ku xwe ji tavê dûr bihêlin...**

**Gelek mirov hene alerjiya wan ji tavê heye, divê ew çi bikin?**

Belê rast e, alerjiya tavê heye û her diçe zêde dibe. Wek te zanîn li welatê me havîn gelek germ e, lê ji ber mirovên me hertim cilên dirêj li xwe dikin bandora tîrêjan li ser wan zêde çênabe. Cara yekemîn alerjiya ji rojê li Girava Mallorka hat dîtin. Ji ber wê jî bi navê Mallorka Aknên tê naskirin. Mirov dikare pir çareseriyên mayînde bêje, lê tenê çareserî ew e ku xwe jî wan tîrêjan bi awayekî dûr bixin. Ji bo wan kesan tenê yek çare heye: divê ew heta ji destê wan tê neçin ber tavê. Wextê diçin derve jî cilê dirêj li xwe bikin. Bi rêya krêma jî tê hewildan ku hinek be jî pêşî lê bigre. Wekî din ew mirov dikarin kalsiyumê jî bigrin; hatiye kifşkirin ku ji bo alerjiya çerm girtina kalsiyûm pir baş e.

***Amadekirin: Zelal Çelîk***

** Dr. Mesud Mamedî ji Rojhilatê Kurdistanê ye. Ew niha li Almanyayê dijî û dermansaz e.*

## Qelewiya piştî hevjîniyê

Li gor encamên lêkolîneke nû, jiyana hevjîniyê û bihevre mayîna digel hevalê jiyanê, mirovan qelew dike.
Rojnameya "Obesity Journal" a brîtanî encamên wê lêkolînê belav kirine û dinivsîne ku metirsa qelewbûnê di dema bi hevrejiyana hevjînan de zêde dibe. Mamosteyê Zanista Xwarinê li Zanîngeha Bakûrê Kaliforniya, Beny Jordon Larsen, eşkere kir ku yek ji sûdên tendirustiyên hevjîniyê kêmkirina rêjeya kêşana cigareyan e, daketina rêjeya mirinê ye. Lê lêkolêr bibîr dixe ku eger xweparêzî nebe, gengaz e ku hevjînî bibe sedema qelewbûnê.
Larsen herwiha dibeje, ji ber kesên ku bi hev re dijîn, çi hevjînî pêkanîbe yan na, dixwazin bi hevre xwarinê amade bikin, loma ew xwarineke zêdetir amade dikin û bêtir ji dema tenêbûnê jî dixwin: "Ji bilî ku hez dikin, bêtir ji çûna derve û mijûlbûna bi sporê, bi hev re temaşeyî televizyonê dikin.

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

## Rozan şahê pêkenokan e



Ez **Rozan** im û di nêzîk de dibim pênc salî. Ez diçim bexçeyê zarokan û ez gelekî ji pêkenokan hez dikim. Ez dixwazim ji we re pêkenokek xweş jî bêjim:

***Gêjo û Qelewo!***

*Rojekê Gejo û Qelewo li bin darê rûniştibûn.*
*Qelewo got "ez birçî me" û çû xwarin bikire.*
*Qelewo çû cem pîzzafiroşekî û got:*
*"Ez dixwazim nan bistînim."*
*Pîzzafiroş jê re got:*
*"Li vir nan tune, li kêleka me nanpêj heye."*
*Qelewo çû cem nanpêj û got "ez pîzzayekê dixwazim".*
*Nanpêj qehirî û jê re got "ma tu gêj î?"*
*Qelewo bersiva nanpêj da û got:*
*"Nexêr ez ne gêj im, Gêjo li derva rûniştiye."*

## Çima guhê kîvroşkê ewqasî direj in?

Kîvroşk yek ji wan ajalan e, yên ku di nava daristan û zeviyên pirgiya de dijîn. Guhên kîvroşkê jî gelekî dirêj in û heta 15 cm dikarin dirêj bibin. Lê çima? Ji ber ku kîvroşk piranî di nav giyayan de dijî, ew zêde tiştekî nabîne, ji ber wê yekê pêdiviya kîvroşkê bi guhên baş heye ku zû bireve, dema dijminekî wê nêzîk bibe. Bi guhên mezintir jî baştir tê bihîstin.
Du diranên pêşiyê ên kîvroşkê gelekî tûj û dirêj in, ji bo birîna xwarinê hertim tûj in. Kîvroşkên kûvî di nava çiya û deviyan de, di tûnêl û qulên veşartî de, ku ew bi xwe dikole, dijî. Piraniya rojê kîvroşk radizin, bi şev, anjî sibeyan zû, digere û xwarinê peyda dike. Kîvroşk ajaleke tirsonek e, ji ber vê çendê jî gelekî şiyar e.



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

### Mîro dikare 50 car ji giraniya xwe zêdetir rake




## Sine

### Welatê me

Sine bajarekî kevnare ye û dikeve rojhilatê Kurdistanê û weke navenda Parêzgeha Kurdistanê di nexşeya Îranê de tê zanîn. Hejmara şêniyên bajêr derdora 800 hezarî ye. Di dema êrişên Moxolan de bajar hatiye xera kirin û di dema Sefewiyan de bajar cardin ji hêla malbata kurdên Erdelanî hatiye avakirin. Bi vî rengî Sine bû navenda mîrnişîna Erdelaniyan. Bajarê Sine bi xweşikbûna xwezaya xwe wek yek ji bajarên herî xweş li cîhanê hatiye naskirin û ji hêla saziya tûrîzma cîhanî sîfatê xweşikbûnê sitandiye.



FÊRÎ KURDÎ BIBE

V ڤ



Tav هەتاڤ